

دەڵێ ”کورد مرۆڤی پلە سێن لە ئەوروپا“
**یەکبوون حەزدەکات لە کوردستان بژیت**

9 ◀

حوسێن حاجی:
**ئەمریکایی دەڵێن ”کورد مرۆڤدۆستن“**

7 ◀




# Rûdaw

ÇAPA EWRÛPA

Xwînerên Rûdawê bêtir dizanin

Deutschland 1,50 Euro | Nederland, Belgique, France 1,50 Euro | Schweiz 2,70 CHF | England 1,40 GBP | Sverige 21,00 SEK | Danmark 15,00 DKK

Hejmar / Nr. 46 | 25 Gulan / Mai 2010 | www.rudaw.net


**HEVPEYVÎN**

Wekîlê AKP'ê yê Amedê Abdurrahman Kurt:
**Xala bingehîn a demokrasiya Tirkiyê pirsa Kurd e**

Di rûpela 11'an de

Piştî Kemal Kiliçdaroglû bû serokê CHP'ê, Endamê Meclisa Partiyê Mesut Deger ji Rûdawê re axifî:

## CHP wê pirsgirêka Kurd bîne rojevê

Kemal Kiliçdaroglû yê Dêrsimî serokê CHP'ê yê nû ye. Herçiqas gelek kes pêşbînî dikin ku wê ti guhertin di siyaseta CHP'ê de pêk neyê, lê li aliyê din tê hêvîkirin ku "Gandî" Kemal bi taybetî di pirsa Kurdî de dawî li siyaseta rêgir ya CHP'ê bîne.




(Wêne: Diha)

"Damezrênerê Komarê" (Cumhuriyetin Kurucusu) çend rojan beriya kongreyê bû berendam

Piştî xwepaşvekişandina Deniz Baykal ji serokatiya Partiya Gel a Komarê (CHP), Kemal Kiliçdaroglû yê ji Dêrsimê di civîna awarte ya 3. di 22'ê Gulanê 2010'an de wek serokê nû yê CHP'ê hat hilbijartin. CHP'ya ku di van salên dawî de ji ber helwesta xwe ya hişk li hemberî pirsa kurd li Bakurê Kurdistanê piştgiriya gel winda kir û bi tunebûnê re rûbirû ma, bi hêvî ye ku bi hatina Kiliçdaroglû dîsa dengên Kurdan bistîne. Rojekê piştî hilbijartina Kiliçdaroglû weke serokê CHP'ê yê nû, Endamê Meclisa Partiyê û parlamenterê berê Mesut Deger, ku weke nûnerê eniya Kurd di nav CHP'ê de tê binavkirin, ji bo Rûdawê got ku ew ê li ser pirsgirêka Kurd bisekinin û pirsgirêka Kurd bînin rojevê. ▶ 2/14

## Hikûmeta Spanya bersiva nameya Kurdan da

Piştî ku nameya bi îmzeya bêtirî hezar Kurdên rûniştvanên welatê Spanya gihişt Serokwezîrê wî welatî û tê de daxwaz ji wî hatibû kirin ku ji bo azadkirina zîndaniyên siyasî li wî welatî zext li Hikûmeta Sûriyê bên kirin, Hikûmeta Spanya bersiv da nameya Kurdan û diyar kir ku Sûriye welatekî nêzîk û dostê wan e.

Serokê Dîwana Serokatiya Hikûmeta Spanya herwiha eşkere kir ku ew ê bûyerên xembar ên mafên mirovan li Sûriyê bişopîne. Di vê derbarê de berpirsên partiyên Kurdî jî dibêjin ku hejmareke zêde ya girtiyên siyasî yên Kurd di zîndanên Sûriyê de hene, rewşa wan pir xerab e û gelek caran rê ji wan re nayê dayîn ew kesûkarên xwe bibînin.

Ji aliyê din ve, Rêxistina Mafên Mirovan li Sûriyê ku dixwaze serjimêriyeke dirust a girtiyên siyasî li wê dewletê amade bike, eşkere kir ku tevî givaştinên navnetewî jî, Sûriyê girtina çalakvanên siyasî didomîne. ▶ 7

## Mîzah û Civak

Keçeke Kurd bi awayeki "nerm" civaka xwe rexne dike ▶ 9

## Sînema û Desthilatî

Fîlmê "Recimkirina Soraya" desthilata Îranê aciz kir ▶ 8



## "Ji sedî 90 zilamê Kurd diçe cehnimê"

Gava mirov dîroka ola Îslamê dişopîne, dibîne ku rola alim û zanyarên Kurd di pêşketina vê olê de pir çêbûye. Ji dema Selaheddînê Eyyûbî heta niha Kurdan di pêşxistina ola Îslamê de rolek sereke lîstine û dilîzin.

Gelek oldarên Kurd hetanî niha jî gelek caran qewmiyeta xwe di ber berjewendiyên olê û ji bo berjewendiya dagîrkerên xwe bi kar anine. Piştî pêşdeçûna hişyarî û tekoşîna netewî, oldarên Kurd jî bi helwestek Kurdayetî li ola xwe xwedî derketin û xwestin ji bin nîrên oldarên dagîrkerên xwe derkevin. Yek ji wan oldar û alimê Kurd jî Mela Fayîq e.

Mela Fayîq xwediyê çandek dewlemend e û gelek salan Serokatiya Hereketa Îslamî ya Kurdistanê kiriye. Mela Fayîq di gelek mijaran de fireh difikire û zilma li ser jina Kurd wek sedema çûna cehnimê dinirxîne. Mela Fayîq ji Rûdawê re axivî. ▶ 10

## Îran û Tirkiye hebûna PKK'ê wekî sedemê topbarana sînor nîşan didin

Ev nêzîkî mehehê ye bi şêweyekî berdewam sînorên Başûrê Kurdistanê ji aliyê firoke û leşkerên Îran û Tirkiyê ve tên topbaran kirin. Di encama van êrişên herdu welatan de, ziyaneke mezin gihaye rûniştvanên van deverên ser sînor. Rayedarên Îranê xelkê wan navçeyan sûcdar dibînin ku alîkariya PKK/PJAK'ê dikin û dibejin ku Îran ji bo parastina xaka xwe van deveran topbaran dike. Desthilatdariya Başûrê Kurdistanê jî van destdirêjiyên Îran û Tirkiyê protesto dike û dixwaze ku topbaran bê rawestandin. Ji aliyê xwe ve Berpirsê Peywendiyên Derve yê PKK'ê, Ehmed Deniz, ji Rûdawê re eşkere kir ku herdu dewlet leşkerên xwe li ser sînoran kom dikin û bi nêt in piştî vekişîna hêzên Amerîka ji Îraqê, Başûrê Kurdistanê dagir bikin. ▶ 4

## Kurd û Nûnertî

Di "Konferensa Îslamê" de nûnerên Kurdan tunebûn ▶ 6










Great Britain

# "CHP wê pirsgirêka Kurd bîne rojevê"

Bawer Çem Amed

Endamê Meclisa Partiyê ya CHP'ê Mesut Deger diyar kir ku wê di rojên pêş de raporên ku li ser pirsgirêka Kurd amade kirine bînin rojevê û ji bo çareserkirina pirsgirêka Kurd çi ji destê wan bê bikin. Endamê Meclisa Partiyê ya CHP'ê Mesut Deger ku ji Amedê ye û di nava CHP'ê de nûnertiya eniya Kurd dike, alîgirî û partîzaniya CHP'ê ji bavê xwe wergirt. Bavê wî Hasan Deger bi salan di nava CHP'ê de xebitî û demeke dirêj parlamenterî kir. Mesut Deger herî dawî di hilbijartinên sala 2002'an de li Amedê hate hilbijartin û bû parlamenter. Ji ber ku CHP di demên dawî de qet pirsgirêka Kurd nexiste rojeva xwe, Deger careke din nehate hilbijartin û CHP jî li herêmê tenê bû partiyeke lewheyê. Lê ji ber ku Deger di nava partiyê de nûnertiya eniya Kurd dikir, ew di partiyê de bû Sekreterê Giştî yê CHP'ê. Piştî hilbijartina Kemal Kiliçdaroglû jî di kongreyê de weke endamê Meclisa Partiyê hate hilbijartin. Rojnameya me Rûdaw bi Mesut Deger re axivî.

**'Em ê li ser pirsgirêka Kurd bisekinin'**

Mesut Deger diyar kir ku wê di nava du sê rojan de hemû rêveberiya CHP'ê bê hilbijartin, kadroyên wan zelal bibin û wiha got: "Piştî ku rêveberî zelal bû, em ê rûnin û derbarê hemû pirsgirêkên Tirkiyeyê de biaxivin, polîtîkaya xwe diyar bikin. Em ê di demên pêş de ji bo herêmê (bajarên Kurdan) dest bi xebateke mezin bikin. CHP wê di rojên pêş de li ser pirsgirêka Kurd, pirsgirêkên kulturî, aboriyê raweste. Em ê weke partî mirovan hembêz bikin, guhdariya derd, kul, keder, êş û janên wan bikin."

**'Em ê rapora pirsgirêka Kurd bînin rojevê'**

Mesut Deger herwiha da zanîn ku CHP wê raporên ku berê li ser pirsgirêka Kurd amade kirine ji nû ve bîne rojevê û wiha berdewam kir: "Di wan raporên ku me berê li ser pirsgirêka Kurd amade kiribûn de hem sedem, hem encam û hem jî rêyên çareserkirina pirsgirêka Kurd têne nîşandan. Divê êdî aştî û biratî pêk bê. Em ê di vî warî de xebateke aktîf bidin destpêkirin." Deger destnîşan kir ku dema bibin desthilatdarî wê benda ji sedî 10 a hilbijartinê kêm bikin û wê hemû pirsgirêkên ku di dema "Rewşa Awarte" de pêk hatine ji nû ve binirxînin û birînên ku ji wê demê mane derman bikin: "Ji bo civak û Kurdên li herêmê dijîn li hev bên, divê şert û merc bêne amadekirin. Em ê van şert û mercan amade bikin."

# Elîta siyasî bi dilsarî pêşwaziya Kiliçdaroglû kir

## "Ezê ti carî 'siyaseta etnîkî' nekim"



Kemal Kiliçdaroglû

Brîndar Deştî Köln

Kemal Kiliçdaroglû yê ku Kurdekî Elewî û ji Dêrsimê ye, di civîna awarte ya 3. di 22'ê Gulanê 2010'an de bi piraniya dengan wek serokê nû yê Partiya Gel a Komarê (CHP) hat hilbijartin. Piştî îstîfakirina Denîz Baykal, partiya CHP ket nav lêgerînekê û di herdu rojên dawiyê de Kiliçdaroglû xwe wek namzetê serokatiyê da pêş. Balkêş e ku piraniya endamên rêveberiya CHP'ê piştgirî dan Kiliçdaroglû û kevneserok Denîz Baykal xeyalşikestî kirin. Denîz Baykal ê ku piştî belavkirina kasêta vîdeoyê bi hêvî bû ku dîsa vegere û bibe serokê CHP'ê, bi hilbijartina Kemal Kiliçdaroglû hêviya xwe bi tevayî wenda kir û xwe di mala xwe de hepis kir û beşdarî komcivînê jî nebû.

Herçiqasî Kemal Kiliçdaroglû berî niha gotibû ku "ez Kurdekî Elewî me" jî, lê balkêş e ku di axaftina xwe de qet behsa Kurdan û pirsgirêka Kurd nekir. Kiliçdaroglû wek piraniya serokên CHP'ê xwe nêzîkî hebûna vê pirsgirêka mezin nekir û peyamên Tirkparêzî û dewletparêziyê dan û got ku ew ê ti carî "siyaseta etnîkî" nekin. Kiliçdaroglû ne tenê behsa Kurdan nekir, lê wî herweha got ku ger ew bibin desthilatdar, ew ê wan dadgehên ku endamên Ergenekonê dadirizînin bigrin.

Derbarê hilbijartina Kiliçdaroglû ji bo seroke CHP'ê piraniya rewşenbîr, nivîskar û siyasetmedarên demokrat ên Tirk û Kurd Kiliçdaroglû xwedî helwestek sar bûn û dan zanîn ku "pirsgirêk ne guhertina serokatiya CHP'ê lê guhertina mejiyê CHP'ê" ye û ji Kiliçdaroglû ne zêde bi hevî bûn. Yek ji wan kesên ku hêviyên mezin ji hilbijartina Kiliçdaroglû nake, Hevserokê BDP'ê Selahattîn Demîrtaş e. Demîrtaş daxuyand ku guhertina bingehîn di guhertina mejiyê partiyê de çêdibe, ne ku serok bê guhertin û mejî heman mejiyê statûkoparêz be.

Nivîskarê kurd yê ji Dêrsimê Haydar Işik jî derbarê hilbijartina Kiliçdaroglû de nêrîna xwe anî ziman û ev hilbijartin weke gaveke dewletê ji bo armancên diyar bi nav kir: "CHP li Kurdistanê ray û hejmarek mezin ya dengan wenda kir, têk çû. Ji bo ku CHP dîsa li Kurdistanê bi hêz bibe, Kemal Kiliçdaroglû kirin serokê CHP'ê da ku ray û dengê Kurdan bistîne." ▶ 14

# Kongreya Navenda PEN'a Kurd pêk hat

## Zerdeşt Haco careke din bû serok



(Wêne: Rûdaw)

Zerdeşt Haco

Salihê Kevirbirî Bonn

Navenda PEN'a Kurd, di navbera 21-22-23'yê Gulan a 2010'an de, li Königswinter/Bonnê kongreya xwe ya 7'an pêk anî û rêveberiyeke nû hilbijart.

Di kongreya ku bi beşdariya 30 endaman pêk hat de Zerdeşt Haco careke din wekî Serokê Navenda PEN'a Kurd hate hilbijartin. Di rêveberiya nû de ji bilî Haco, Berîvan Doskî, Mîrhem Yîgît, Kakşar Oremar û Bedredîn Salih hene. Abdullah Hîcab û Necîb Balayî di rêveberiya nû de cîgir in.

Di kongreya navborî de, ligel raporta darayî, axaftin û gengeşî li ser kar û xebatên berê jî hatin kirin û raportên çar komîteyên bi navê Komîteya Nivîskarên di Zîndanan de, Komîteya Nivîskarên ji bo Aştiyê, Komîteya Jinên Nivîskar û Komîteya Mafên Ziman û Wergerê hatin xwendin û li ser wan hatin nîqaşkirin.

Piştî kongreyê Zerdeşt Haco ji Rûdawê re ragihand ku ew ê di kar û barên xwe de hewl bidin di asta PEN'a Navneteweyî de li ser aştiya Kurdistanê kar bikin. Haco her wiha diyar kir ku PEN'a Kurd heta niha bi qasî ji dest hatiye ji bo aştiya cîhanê, azadiya bîr û ramanê, wekheviya zimanan û li dijî zordestiya li ser jinê têkoşiyaye û di serdema rêveberiya nû de ew ê van karan bihêztir berdewam bikin.

Endamê Desteya Rêveber Mîrhem Yîgît jî da zanîn ku bi encamdana kongreyê derketiye holê ku rola PEN'a Kurd, ji qasî ku tê texmînkirin mezintir e. Yîgît diyar kir ku PEN'a Kurd xwediya rabirduya 20 salî ye û di vê maweyê de hem di warê sazîbûnê de, hem jî di warê gihandina kesan de tecrûbeyeke girîng hatiye pê.

Yek ji rêveberên cîgir Abdullah Hîcab jî got ku nivîsandin bixwe erkek e û ji niha pêve pêwîst e qelem bi berpisiyartir tevbigere. Hîcab da zanîn ku PEN'a Kurd heta jê hat dergehên navneteweyî vekirin û divê van dergehan ji bo edebiyat û nasnameya kurd baş bi kar bîne.




**Rûdaw**

**Rojnameyeke siyasî û heftane**

**Xwedî**
Rudaw Media GmbH

**Serokê Civata Rêvebir**
Nûredîn Weysî
nuradinwaisi@rudaw.net

**Sernûser**
Ako Mihemed
akopress74@yahoo.com

**Rêvebirê Nivîsînê**
Nasredîn Akyol
nasredin@rudaw.eu

**Redaksiyon**
Firat Kelehkî
kelehkî@yahoo.com

Azad Kurdî
azadKurdi@hotmail.com

Besam Mistefa
wardoz@gmail.com

Sîdar Bengîn Epozdemir
sidar@rudaw.nl

**Dîzayner**
Memo Celâl

**Îdare û belavkirin**
Mustefa Sefîq Edilbî
gare2005@hotmail.de

**Şêwirmendê yasayî û aborî**
Dipl. Kfm. Abdulletif Canimana
info@canimana.de

**Navnîşan**
Rudaw Media GmbH
Gutenbergstr. 63a
50823 Köln/Germany

Telefon: +49 (0) 221-26 00 40 02
Telefax: +49 (0) 221-26 00 49 81
www.rudaw.net
info@rudaw.eu

Rûdaw bo nivîsên ku bi nav tên weşandin ne berpirsyar e.

Berpirsekî berê yê CIA'ê li Kurdistanê:

# Desthilata Kurdî ji herêmeke otonom derbas nabe

## Francona derbarê daxuyaniya endamê berê yê MIT'ê Mahir Kaynak got ku ew giringiyê nadê wan gotinan

Rick Francona piştî sala 1975'an çendîn erk li Rojhilata Navîn û bi taybet li Îraqê jê re hatin spartin, ji sala 1988'an ve li beşê sîxorî yê Balyozxaneya Amerîka li Bexda kar kiriye, piştî şerê azadkirina Kuweytê ew endamê şanda danûstanên sekinandina şer de bû. Piştî şerê Kendavê ew nivîskarê sereke bû li buroya Wezîrê Parastina Amerîka bo nivîsandina raporên Wezaretê yên derbarê şer.

Piştî sala 1995'an li gel Dezgeha Îstixbarata Amerîka, CIA, li Herêma Kurdistanê û Rojhilata Navîn xebitiye. Pirtûkek wî bi navê 'Ji hevalbendiyê bo dijmin: Serpêhatiya şahidekê di dema lêxistina Îraqê de' derbarê çalakiyên li Îraqê belav kiriye. Francona gotinên berpirsê berê yê MIT a Tirkiyê, Mahir Kaynak, ku ji Rûdawê re gotibû Amerîka piştgiriya avakirina dewleteke Kurdî dike, red dike, navborî dibêje Amerîka ji bo pêkhatina dewleteke serbixwe ya Kurdî naxebite.

**Rûdaw: Gelo tu dahatûya Îraqê çawa dibînî? Wê Amerîka rê bide ku Îraq ber bi Îranê biçe? Yan wê Sunne vegerin ser desthilatê û Îraqê vegerînin nav çarçoveya kevin, yan jî wek pir kes texmîn dikin Îraq bê parçekirin?**

Rick Franckona: Hêjî nîşanên pirsê li ser dahatûya Îraqê mane, lê ez geşbîn im ku Îraqî dikarin bi hev re çareseriyekê peyda bikin, herwiha dawî bi metirsiya El Qaîde li Îraqê bînin û piştre proseya tedawîkirinê destpê bikin. Lê ez nigeranê nêzîkbûna Îranê ji partiyên Şîî me. Pir kêfxweş bûm dema min dît hevalê min Eyad Elawî, di hilbijartinan de serkeft. Divê Îraq dubare bibe welateke sekular. Pêkhatina hikûmeteke olî tenê di berjewendiya Îranê de ye. Divê hemû karek bê kirin ji bo ku bandora Îranê li ser Îraqê kêm be, lê bawer nakim Serok Obama wêya bixwaze. Hêvî dikim hikûmetek were pêkanîn ku rê bide Sune jî di hikûmetê de beşdar bin. Yan wê hêrsbûn li beramberî Şîiyan derbikeve holê û encama wê jî tenê şer dibe. Ez parçebûna Îraqê nabînim, ji ber ku cihê çavkaniyên petrolê prosa perçebûnê dijwar dike. Dabeşbûna Îraqê bo sê herêmên Kurdî, Sune û Şîî ne serkeftî dibe.

**Tu ne bawerî ku di hevrikiya Amerîka û Îranê de li ser Îraqê, Îran serkeftî ye û divê Amerîka paşdekişyanê bike?**



Rick Francona

Hêvî dikim ne wisa be, lê çareserkirina pirsgirêkên Rojhilata Navîn ji aliyê rêveberiya Obama, metirsiya wê yekê çê dike ku Îran bibe hêzeke bê rikeber û di nav herêma Kendava Erebî de jî serdest be. Nabe Amerîka hêzên xwe ji Îraqê vekşîne, ev yek ji ber du sedeman şaşe: Yekem, ne pêwîst bû dema vekşandina hêzan bê diyar kirin, bi wî awayî tu ji rikeberê xwe re dibêjî, dema min ew çiqas maye ew jî golên xwe lêdixe. Dûwem jî; ez bawer im ji ber rûbirûbûna hêza Îranê li deverê, hebûna Amerîka pir pêwîst e û bo wê mebestê jî Îraq ciheke jêhatî ye.

**Serokê berê yê MIT a Tirkiyê, Mahir Kaynak, hefteya borî ji Rûdawê re got ku Amerîka dixwaze rewşek derkeve holê ku Îraq perçe bibe û dewleteke Kurdî bê avakirin, gelo senaryoyeke bi vî awayî çêdibe?**

Ez gelek giringiyê nadim wê yekê ku Tirk çi dibêjin, bi taybet dezgehên wê yên sîxoriyê, ji ber ku min li gel bêtiriya wan kar kiriye. Ez ne bawer im planeke wiha di mejiyê Amerîka de hebe, ji ber ku me herdem amaje daye ku divê rêz li yekçerçebûna Îraqê bê girtin. Li gel ku hêviyên Kurdan di vê derbarê de hene, lê ez nabînim ku dewleteke serbixwe ya Kurdî pêk bê. Desthilata Kurdî ji herêmek otonom derbas nabe.

**Hat behis kirin ku Amerîka di Adar a 2003'an de li ser bingeha zanyariyên şaş, çend mûşek li navendeke nuklerî ya derdora Bexda xistibûn, bi wê hêviyê ku Sedam li wir be? Tê gotin aliyek Kurdî agahiyên han dabûn CIA?**

Ew êrîşa Amerîka ne eleqedarê min bû, lê min ji çend çavkaniyan bihîst ku wan kesek di wê herêmê de hebûye, dibe ew kesê li wir dima Kurd be.

**Peywendiyên CIA li gel kîjan aliyê Kurdî zêde bihêz û cihê baweriyê bû, bi taybet di dema hilweşandina rejîma Sedam Husên de?**

Peywendiyê me li gel PDK û YNK'ê jî pir baş bûn, lê min zêde li gel YNK'ê kar kiriye. Ev jî li gor parvekirina xebatên me bû, hevkarekî min ê din zêde li gel PDKê kar dikir. Derbarê beşa dûwem a pirsa te min nerînek şexsî heye, lê hez dikim bersiv nedim.

**Di salên 90'an de we malbatek ji Îraqê bi rêya Kurdistanê gihand Amerîka, ew çi malbatek bû û armanca we ji birina wê çi bû?**

Sala 1995'an me li Bakurê Îraqê û herêmên Kurdî kar dikir. CIA daxwaz kir ku em malbata Dr. Xizir Hemze ji Îraqê derbixin, ew pisporê beranameya çekên nukler ên Sedam de kar kiribû. Dr. Hemze hatibû rizgar kirin, lê dixwest em malbata wî jî rizgar bikin. Me malbata wî bi silametî gihan Amerîka.

**Hevpeyvîn: Hawar Ebdulrezaq**

Wezîrê Pêşmerge yê Hikûmeta Herêma Kurdistanê:

# Meaşê pêşmerge wek meaşê leşkerên Îraqê lê tê

Wezîrê Karûbarên Pêşmerge yê Hikûmeta Herêma Kurdistanê Şêx Cefer Şêx Mistefa, di hevpeyvînekê de li gel Rûdawê ragihand ku pêşmergeyên nikarin perwerdeya leşkerî bikin, wê li gor yasa xanenişîna pêşmergeyan reftar li gel wan bê kirin. Herwiha, Şêx Mistefa got ku her hêzek yan alayek ku tê rêkxistin, bi awayekî rasterast meaşê pêşmergeyên van hêzan dibe wek meaşê serbazên Îraqê.

**Rûdaw: Yekkirina hêzên pêşmerge gihişt ku?**

Şêx Cefer: Biryar hatiye wergirtin hêzên pêşmerge bibin yek. Divê pêwîstiyên yekîtiyê bên dabînkirin, niha butçe û meaşên pêşmergeyan ji hisabên Wezareta Pêşmerge ya Hikûme- ta Herêma Kurdistanê tên dabînkirin. Niha me çar alay rêkxistine, hinek pirsgirêkên biçûk hene lê wê bên çareserkirin.

**Ev her çar lîwa li ser PDK û YNK'ê de dabeşkirî ne?**

Na. Lîwa ji pêşmergeyên YNK, PDK'ê û hizbên din pêk tên, ên ku pêşmergên wan hene û di xebata çiya de beşdar bûne. Êdî sîstema fifty-fifty tune.

**Tê gotin ku 18 lîwa tên pêkanîn û du ji wan ji bo çekên giran tên bikaranîn. Bi çi awayî we li ser vê yekê li hev kiriye û kengî dirust dikin?**

Li gor pêşmergeyên li Kurdistanê hene wê lîwa bên rêkxistin. Divê em di destpêkê de nas bikin pêwîstiya me bi çend hêzan li Kurdistanê heye, piştre li ser vê bingehê emê lîwayan dirust bikin.

**Fermandariya hêzên pêşmerge li Dihokê Şêx Elî dibêje, pêşmergê ku temenê wî zêdeyî 35 salan be di nav hêzên hevgirtî yên pêşmergeyan de nayê wergirtin. Gelo biryarek bi vî awayî heye?**

Emê hêzek fermî dirust bikin û divê taybetmendiya wê hebe. Lê dibe ku pêşmergeyekî temen mezin nikaribe rahênan û perwerdeya leşkerî bike, loma wê li gor yasa xanenişîna pêşmergeyan reftar li gel wan bê kirin.

**Piraniya pêşmergeyan ji kêmbûna meaşê xe gazindan dikin, kengî wê meaşê wan bê zêdekirin û wê bibe çiqas?**

Hêzên ku em nû dirust bikin wê meaşên wan wek meaşê leşkerên Îraqê be. Pêşmergên din jî heta bên rêkxistin wê meaşê wan hinekî bên zêdekirin û hemû bibe meaşek. Di pêşerojê de, meaşên hemûyan dibe wek meaşê serbazên Îraqê. Nizanim di dahatû de, wê meaşê wan bibe çend lê niha jî li gor pileyên wan meaşê pêşmergeyan ji 75-100 hezar dînaran hatiye zêdekirin.

**Derbarê pirsgirêka girêbestên petrolê, Bexda hinek nerm bûye. Gelo wê pirsgirêka pêşmergeyan û Bexda bê çareserkirin, Bexda li ser jimara pêşmerge, butçe û xanenişînan razî ye?**

Yek ji mercên me jî bo hevpeymaniyê li gel fraksyonên siyasî yên Îraqê çareserkirina pirsgirêka pêşmergeyan e. Divê ji bo çareserkirina pirsgirêka pêşmerge û pirsgirêkên din li gel Bexda, hikûmeta Îraqê bi awayekî nivîskî, fermî û îmzekirî soz bide van pirsan çareser bike. Biryar bû meaşê xanenişîn û kêmendamên pêşmerge ji aliyê Îraqê ve bê dayîn. Piştre ev biryar betal kirin. Tê çaverêkirin, hikûmeta nû ya Îraqê van arîşeyan çareser bike.



Şêx Cefer Şêx Mistefa

**Ji revandin û terorkirinên ku li Hewlêr û Silêmaniyê qewimîn, di van rojên borî de Wezareta Pêşmerge ji van kiryaran berpirsiyar e?**

Peywendiya hêzên pêşmerge bi hundirê bajarên Kurdistanê tune. Ewlekariya bajaran erka polîs û hêzên ewlekariyê ye. Erka pêşmergeyan li derveyî bajara ye, pêşmerge dikare dema pêwîst bike hevkariya hêzên polîs û asayîş bike. Kiryarên hanê pir xerab in û xelkên Kurdistanê dûdil dikin. Hêvîdar im di demek herî kurt de encamderên van kiryaran ji aliyê polîs û asayişan ve bên dîtin.

**Hûn terorkirina Serdeşt Osman û Mihemed Tahir çawa dinirxînin?**

Herdu bûyer cuda ne. Daxwaza (pereyan ji kes û karên Mihemed Tahir kirine û yek ji kesên ku ew revandine hatiye kuştin, loma wan Tahir kuşt. Serdeşt xwendekar û rojnamevan bû, li ber zanîngehê hatiye revandin û termê wî li Musilê hat dîtin.

**Metirsiya wê yekê heye ev kiryarên revandin û kuştinê bidomin û Herêma Kurdistanê bibe wek Bexda?**

Na. Li hemû welatên cîhanê bûyerên bi vî rengê rû didin. Polîs û asayîş niha bi hurdî lêkolînan dikin, bi baweriya min wê eşkere bibe. Li Ewrûpa jî bûyerên wiha carina diqewimin.

**Hevpeyvîn: Necîbe Mihemed**

Topbarankirina sînor çîrokeke berdewam e:

# ■ Herêma Kurdistanê daxwaza rawestandinê dike
# ■ Îran û Tirkiye jî daxwaza derkirina PKK'ê dikin

**Necîbe Mehmûd/Ferman Çomanî** Hewlêr û Raniye

Piştî ku çend mehan topbaranên Îran û Tirkiyê bo ser Herêma Kurdistanê hatibûn rawestandin, ev meheke ew du welat dubare topbarana axa Herêma Kurdistanê dikin. Ji bilî ziyanên darayî û koçberbûnê, ev topbaran bûne sedema kuştin û birîndarbûna hevwelatiyên sivîl jî.

Helîme Hemed a 30 salî xelka gundê Spiyegile yê girêdayî navçeya Jarawe ya Qazaya Ranyê ye. Ew li nêzîk konê ku rêxistinên xêrxwaz ji wan re daye, rawestiya bû û got: "Rewşa me pir xerab e, ji tirsa bombebaranê me gund vale kir, wek parsekan li me hatiye, sê-çar mal di bin konekî de dijîn."

Pira Heso 20 kîlometran ji navçeya Jarawe dûr e, zêdeyî 60 malên koçber konên xwe hildane û jiyaneke dijwar derbas dikin. Li wir jî hin car ji ber topan neçar dimînin bar bikin. Herwiha nêzîkî 70 malan jî koçberî gundê Şîwerez ê navçeya Helşo bûne, ew bêyî kon û star dijîn. Du hefteyên borî li sînorên Amêdî û Zaxo li Parêzgeha Duhokê jî, herwiha navçeya Sîdekan li Parêzgeha Hewlêrê, Tirkiyê bombebaranên berfireh bi top û balafiran destpê kiriye.

Ji ber topbaranên Îranê du kes birîndar ketin û zêdeyî 130 mal jî ji Qezaya Raniye koçber bûn. Gule Ebdula ya rûniştvana gundê Maredû, ji ber topbarana Îranê bi dijwarî birîndar bû. Keça Gule, Leyla ya 27 salî dibêje: "Gundê me bi dijwarî topbaran kirin, dayika min birîndar bû, mal û rewşa me têk çûye û xisareke zêde gihaye me, daxwaza me ew e Îraq û welatên Ewrûpa û Amerîka wê pirsgirêkê çareser bikin û bigihin hawara xelkê belengaz ku her sal malwêran û derbider dibin."



Dîsan Îran û Tirkiyê sînorên Herêma Kurdistanê topbaran dikin

Qaymeqamê Qezaya Pişder, Hesen Evdilla, ji bo Rûdawê got: "Heta niha zêdeyî 130 malbat koçber bûne, me daxwaz ji berpirsên hikûmetê kir ku ji bo rawestandina topbaranê kar bikin û em hewil didin li gel rêxistinên xêrxwaziyê pêdawîstiyan bidin xelkên koçber."

### "Dixwazin derbasî xaka Herêma Kurdistanê bibin"

Şahidên bûyerê dibêjin Îran û Tirkiye hêzên xwe li ser sînor kom kirine û rojane xaka Herêma Kurdistanê topbaran dikin û zerer gihaye PKK'ê û çar gerîlayên wê hatine kuştin.

Berpirsê Peywendiyên Derve yê PKK'ê, Ehmed Deniz, daxuyaniyek da Rûdawê û got: "Îran û Tirkiyê hêzeke mezin li ser sînor kom kirine û bi nêt in li gel kişandina hêzên Amerîka ji Îraqê, derbasî hundirê xaka Herêma Kurdistanê bibin." Deniz herwiha got: "Wan lihev kirine xaka Başûrê Kurdistanê dagîr bikin." Lê Berpirsê Ragihandina Fermandariya Hêzên Pêşmerge, Cebar Yawer, wê yekê red dike: "Baregehên Îran û Tirkiyê li van navçeyan hene û wan hêzên şer kom nekirine û ger hêzên wan li navçê hebin jî, ji bo bergirîkirina xwe ye û girtina rê li pêşiya çûna endamên PJAK û PKKê bo nav xaka wan e."

Konsolgerê Giştî yê Îranê li Hewlêrê, Seyid Ezîm Husênî, ji bo Rûdawê daxuyand: "Xerabkar û terorîstên PKK û PJAK'ê derbasî nav xaka Îranê dibin û karên terorîstî pêk tînin. Îran ji bo parastina xaka xwe, sînoran topbaran dike."

### "Topbaranên Îranê li gel bingehên cîrantiyê naguncin"

Serokayetiya Kurdistanê jî daxwaz kir topbarana bê rawestandin. Serokê Hikûmeta Kurdistanê, Berhem Salih, got: "Topbaranên Îranê li gel bingehên cîrantiyê naguncin, me daxwaz ji wan kir topbaranê rawestînin."

Konsolê Îranê li Hewlêrê jî ragihand: "Xelkên navçeyên sînorî rê xweş dikin ku endamên PJAK û PKK'ê derbasî Îranê bibin. Ger Îraq bikare wan li ser sînoran nehêle, wê ev pirsgirêk çareser bibin. Serkirdên Kurd wê li gel PJAK û PKK'ê baxivin bo rawestandina çalakiyên wan."

Nûnerê Hikûmeta Herêma Kurdistanê li Tehranê, Nazim Umer, jî dibêje: "Ev topbaran di encama çalakiyên çekdarên PJAK'ê de hatine kirin. Em kar ji bo rawestandina topbaranan dikin, lê ev pirsgirêk ne tenê bi Hikûmeta Herêma Kurdistanê tê çareserkirin."

## Çapemeniya Tirk dijminatiya Kurdan belav dike

**Şengul Ogur**

Komeleya Guherîna Civakî bi piştgiriya Weqfa Civaka Vekirî (Global Dialague) di çarçoveya projeya bi navê "Di Çapemeniya Netewî de Tawanên Kînê: 10 Sal, 10 Mînak" de, 20 rojnameyên Tirk yên di navbera salên 2008-2009 de bi rêya înternetê di ber çav re derbas kir.

Ekîba lêkolînê nûçeyên 20 rojnameyên Tirk li gorî nûçeyên tawana etnîk, ol û bawerî, nasnameya netewî, meyla siyasî, statûya civakî, nasnameya zayendî, meyla zayendî, astengiya bedenî, milkiyet û rewşa perwerdehiyê kategorî kirin.

Di destpêkê de 30 hezar nûçeyên ku cudatiyê dihewîne hatin diyarkirin. Ji van 30 hezar nûçeyan, pêşî 5 hezar jê hatin veqetandin û dû re jî 200 ji van hatin bijartin. Ji nav wan 200 nûçeyî jî 10 mînakên herî xerab ku cudatiyê û kînê di xwe de dihewînin hatin diyarkirin.

Li gorî projeyê, di deh salên dawî de ji nav 5 hezar nûçeyan, 1031 nûçe tawana kîn û nefretê û 3 hezar û 961 nûçê gotinên kîn û nefretê di xwe de dihewînin.

Nûçeyên ku tawanên kîn û nefretê û gotinên kîn û nefretê di xwe de dihewînin, herî pir di derbarê koka etnîkî, nasnameya netewî û ol û baweriyê de ne.

Di çarçoweya projeyê de, 10 nûçeyên mînak ku tawana gotinê dihewînin hatine diyar kirin û kategoriya wan ev in:

1- Dilovaniya Madamê ya li Ahmet Kaya- Sabah-koka etnîk

2- Vê carê har bûn-Milliyet-meyla zayendî

3- Ermenî hêç bûn-Yeni Çag-nasnameya netewî

4- Xayin hatin girtin-Star-koka etnîk

5- Doza li stranbêja dergevan destdirêjî-Hurriyet-statuya civakî

6- Şeqama Osmanlî li rêberê Koreyî- Radîkal-nasnameya netewî

7- Rahib doxîna xwe li dêrê vedikin-Vatan-baweriya olî

8- Roth hewaleyî xoce Ayvaz-Akşam-zayendî

9- Qundaxkerê sunetnekirî li ser navê DTP'ê çerm daye hev-Zaman-ola bawerî

10- Quryeyên trawestî li balafirgehê hatin girtin-Turkiye-meyla zayendî

Ji van deh mînakan, mînakên 1,4,6,8 û 9'an her çendî di kategoriyên cuda de bin jî, di derbarê Kurdan de ne. Mînak, ji ber ku rêberê Koreyî navê Kurdistanê bi kar aniye "şeqama Osmanî" xwariye. Mînaka 4'an di derbarê bûyera şewitandina ala Tirk ya ku di 2005'an de li Mêrsînê pêk hatibû de ye.

Mînaka 8'an jî di derbarê parlamanter Claudia Roth de ye. Sedema vê heqareta ku li Roth hatibû kirin ew bû, ku wê di sala 2000'î de hatibû Amedê û ji Şaredarê Amedê Ferîdûn Çelîk re gotibû "Sefaretê mezin". Ayvazê ku Roth hewaleyî wî hatiye kirin jî yekî MHP'yî ye. Di 1995'an de sê parlamenter ji Ewrûpa hatibûn Tirkiyê û ji Tirkiyê xwestibûn ku parlamenterên DEP'î serbest bên berdan. Ayvazê ku wî çaxî wezîrê dewletê bû wiha gotibû: "Em ê van xayinan ji bo xatirê fahîşeyên nizam nûnerên çi ne serbest bernedin." Mînakên 1 û 9 jî dîsa di derbarê Kurdan de ne.

Hebîbula Letîfî 7'ê Hezîranê tê darvekirin

# Ji Mam Celal re soz dabûn darve nekin

Xûşka Hebîbula banga rêxistinên navnetewî dike ji bo ku darvekirina birayê wê bidin rawestandin

**Azad Kurdî**

Xwendekar û çalakvanê sivîl ê Kurd Hebîbula Letîfî yê 26 salî, li gel 17 çalakvanên siyasî û sivîl ên din ku ji aliyê Dadgehên Komara Îslamî ya Îranê cezayê darvekirinê wergirtiye, biryar e 7'ê Hezîranê bê darvekirin. Herçiqas berê rayedarên Îranê ji Serokkomarê Îraqê, Celal Talabanî, re soz dabûn ku biryara darvekirina Hebîbula û girtiyên din ên Kurd bidin sekinandin.

Di rûniştina hefteya borî ya rayedarên ewlekarî û dadwerî yên Parêzgeha Sine de, biryara dawî bo darvekirina Hebîbula Letîfî hatiye dayîn û biryar e li 7'î Hezîran a 2010'an de bê darvekirin. Lê Rêxistina Dijî Îdamê li Kurdistanê ragihandiye, biryara darvekirina Letîfî roja 24'ê Gulanê rêve diçe. Li gel eşkerebûna vê nûçeyê, nigeranî derbarê çarenûsa wî girtiyê siyasî yê Kurd zêde bûye.

Xûşka Hebîbula, Îlahe Letîfî, got: "Em dizanin ku biryara dawî ya darvekirina Hebîbula hatiye da-yîn. Min serdana Dadgeha Sine jî kir, lê bersivek zelal nedan min." Ew ji ber rewşa siyasî ya Rojhilatê Kurdistanê nigeran: "Tirsa me ew e ku Dezgehên Dadê biryara dawî bi me yan parêzerê me ne raghînin û Hebîbula di bêdengiyê de darve bikin."

Hebîbula Letîfî xwendekarê Zanîngeha bajarê Îlamê ye û du salan berî niha ji aliyê hêzên ewlekarî yên Îranê li Sine hat girtin. Parêzerê Hebîbula Letîfî, Mihemed Salih Nîkbext, ji Rûdawê re ragihand, çend tomet ji Hebîbula re hatine dan, ji wan 'Muharibe' (şer bi xwedê re) bi rêya endambûn û alîkarîkirin li gel PJAK'ê.



**Komeke hevwelatiyên Kurd li ber deriyê zîndana bajarê Sine**


**Hebîbula Letîfî**

Di meha Mijdar a sala borî, Serkomarê Îraqê, Celal Talabanî, ji rayedarên Îranê xwest ku biryara darvekirina wan du girtiyan hilweşîne, berpirsên Îranê jî soz dan Talabanî ku ewê biryara wan du girtiyên Kurd bidin sekinandin. Dayîka Şêrko Mearifî, Ruqiye, ji rizgarbûna lawê xwe bêhêvî maye û ragihand: "Em spasiya wê hewldana mirovane ya Mam Celal dikin, lê mixabin hewildanên wî bêyî encam bûn." Her di vê derbarê de, Salih Nîkbext wiha axivî: "Ew daxwaza Mam Celal ti bandor li ser dosya Letîfî çênekiriye."

Nûnerê Hikûmeta Herêma Kurdistanê li Tehranê, Nazim Omer, di daxuyaniyekê de bo Rûdawê eşkere kir: "Min bi xwe name gihand karbidestên Îranê. Komara Îslamî soz dabû di qonaxa yekem de biryara darvekirina wan bisekinîne û gotin emê hewlê bidin guhertinê di wan biryaran de çêbikin." Omer herwiha got: "Emê pirsê bişopînin û hewlê bidin daxwaza Mam Celal bê cîbicîkirin." Lê Nazim Omer ragihand: "Li Îranê dema Dadgeh biryara dawî dide, ji bilî rêberê Komara Îslamî ya Îranê kes nikare wê biryarê biguherîne."

Sûça 'Muharibe' wate şerê bi xwedê re, tawanek e piraniya kesên ku pê tên tawanbar kirin, cezayê darvekirinê distînin. Parêzerê wî girtiyê siyasî diyar dike: "Hebîbula dibêje di dema çêbûna bûyera wan du teqînan de, ew li bajarê Pîranşarê bûye û mala ku ew lê mabû amade ne şahidiyê jê re bidin." Letîfî ji parêzer û malbata xwe re ragihandiye, hinek tomet bi darê zorê û di bin îşkenceyê de jê standine.

Xûşka Hebîbula, Îlahe, da zanîn, wan sala borî dema serdana Elî Xameneyî bo bajarê Sine namaeyek dan wî û daxwaza lêborîna Hebîbula jê re kirin. Îlahe ku heta niha jî wê nameyê dişopîne wiha got: "Heta niha bersiva wê daxwaza me nehatiye dayîn."

Îlahe Letîfî, tometên ku birayê wê pê hatiye mehkûmkirin nerast û bê bingeh dihesibîne: "Ew tomet hemû bê bingeh in û tenê bo sepandina biryara darvekirinê tên bikaranîn, bêyî ku dirust bin û belgeya wan hebe."

Îlahe banga rêxistinên navnetewî dike ku ji Hikûmeta Îranê daxwaz bikin beriya ku birayê wê bê darvekirin, biryara han li ser wî bê rakirin. Herçiqas bi xwe jî bawerî pê re tune, lê daxwaz ji rayedarên Îranê dike ku bi belgeyeke ne selimandî birê wê darve nekin û axaftina xwe wiha qedand: "Lê rayedarên Îranê li ser tometên xwe yên bêyî bingeh derbarê Hebîbula pêdagir in û balê nadin xwestek û rexenyên me."

---

Rêveberê Amnesty International ji bo Rûdaw:

# Emê gavên pratîkî bavêjin û kampanya li dijî Îranê li dar bixin

Li gor Malcom Smart desthilatdarên Komara Îslamî zêdeyî hemû welatên din ên cîhanê xelkê darve dike

Rêveberê Rêxistina Amnesty International (Lêborîna Navneteweyî) ji bo Rojhilata Navîn û Bakurê Afrîqa, Malcom Smart, di hevpeyvînek taybet de li gel Rûdawê, balê dikşîne ser darvekirina çalakvanên siyasî yên Kurdên Îranê û diyar dike, ew dixwazin bi avêtina hin gavên pratîkî û lidarxistina kampanyayan zext û guşarên cor bi cor bixin ser Îranê.

**Rûdaw: Behsa darvkirina Hebîbula Letîfî di rojevê de ye, gelo Amnesty International ji bo rêlibergirtina darvekirina wî girtiyê Kurd çi karek kiriye? Di vê derbarê de em tiştekî ji we çaverê bikin?**

Malcom Smart: Belê, em bi awayekî aktîv û berfireh dosya Hebîbula Letîfî dişopînin, tu dikarî di malpera me de jî temaşe bikî, me bi sedan belge û dokument di vê derbarê de weşandine.

**Hûn rewşa mafê mirovan li Îranê çawa dinirxînin?**

Em di derbarê pirsên mafê mirovan ên li Îranê nigeran in ku beşek ji wan cudahiyên beramberî kêmaniyên etnîkî û olî pêk tîne û tê meşandin. Kurd yek ji wan kêmaniyan in ku di warê mafê sivîl û siyasî de mafên wî gelî tê binpêkirin. Mafên wek azadiya ra û nerînan, avakirina rêxistin û saziyan û heta dadgeh jî beramberî Kurdan ne dadperwer in, bi şêwazek nebaş bi Kurdan re tevdigerin. Emê li ser amadekirina lêkolîn û komkirina belgeyan û heta gavên pratîkî û lidarxistina kampanyayên li dijî binpêkirina mafê mirovan ku li Îranê tê meşandin, bi awayekî pir aktîv berdewam bin.


**Malcom Smart**

Emê berdewam zext û guşarê bixin ser hikûmeta Îranê da ku neçar bikin mafên mirovan ên cîhanî û ew peymanên ku di derbarê mafê mirovan de îmza kirine biparêze. Di çend salên borî de rewşa mafê mirovan li Îranê ber bi pêvajoyek nebaş ve dimeşe û desthilatdaran hewl daye dengê nerazî û rexnegir bifetisînin, ew xwepêşandanên girse ku piştî hilbijartina meha Hezîrana 2009'an serî hildan, bi dawî bînin.

Yek ji nigeraniyên herî mezin cezayê mirinê ye. Ji ber ku desthilatdarên Îranê zêdeyî hemû welatên din ên cîhanê xelkê darve dike. Îran yek ji wan welatên hindik ên cîhanê ye ku zarokan darve dike – Mebesta min ew kes in ku tê gotin tawanek kirine û temenê wan kêmî 18 salî ye û tên darvekirin. Li gel hemû hejmareyek zêde ji wan dadgehîkirinan ku heta niha hatine meşandin, ne dadperwerane bûn.

**Di derbarê darvekirina çar girtiyên siyasî yên Kurdên vê dawiyê de dîtina we çi ye?**

Wek di belgeya jêr de tê xuyakirin, em bi eşkere li dijî sizayê darvekirinê bûne û me şermezar kiriye, darvekirina kesê pêncem jî her di vê çarçovê de hat meşandin.

Raportên AI derbarê Îranê de: http://www.amnesty.org/en/news-and-updates/iran-executes-five-political-prisoners-2010-05-11

**Hevpeyvîn: Namo Ebdula**

Almanya Kurdan piştguh dike:

# Konferensa Îslamê bêyî Kurdan pêk hat

## Di konferansê de komeke kesayetiyên serbixwe yên misilman û nûnerên komelgeha Tirkî jî beşdar bûn

**Sîrwan H. Berko** Berlîn

Dema hefteya buhurî li Berlînê paytexta Almanyayê Konferensa Îslamê ya Almanî pêk hat, Kurdek jî tê de amade nebûbû. Serokê Komelgeha Kurdên ji Sûriyê li Berlîn-Brandenburgê, Beha Mihemed, vê yekê mixabin dibîne. Kurdê 61-salî diyar dike ku wî dixwest beşdarî konfersênê bibe, lê ne ji bo li ser Îslamê biaxive. Beha Mihemed dibêje: "Ta niha ti helwesta komeleyên Kurdî li ser Îslamê tunebû. Kurd Misilman in, ku bi erkê xwe radibin bêyî ku olê bixin rêza yekem."

Hikûmeta Almanî ji sala 2006'ê ve Konferensa Îslamê ya Almanî pêk tîne. Armanca sereke ya hikûmetê ew e ku peywendiya di navbera dewleta Almanî û Misilmanên nişteciyên Almanyayê baştir bike û pirsgirêkên herdu aliyan bi hevûdu re çareser bikin. Li kêleka rêxistinên ku nûnerîtiya Misilmanan dikin, herweha komek kesayetiyên serbixwe yên Misilman û herweha nûnerên komelgeha Tirkî jî beşdarî vê konferensa giring bûne.

Siyamend Haco ji Navenda Ewrûpî ji bo Lêkolînên Kurdî ecêb nabîne ku Wezareta Hundir a Federal nûnerek rêxistinên Kurdî vexwendî konferensê nekiriye. Ew dibêje ku li Almanyayê gelek guftûgo li ser mijarên bi Îslamê ve girêdayî pêk hatine bêyî ku rêxistinên kurdî beşdar bibin. Ew mînakên ji bo bêçalakbûna rêxistinên Kurdî bi nav dike: "Li Almanyayê guftûgo li ser dersên Îslamê, perwerdekirina îmamên mizgeftan ji aliyê dezgehên Almanî ve û li ser babetên din pêk hatin, ji her deverê deng dihatin bihîstin, lê tenê dezgeh û kesayetiyên Kurd bêdeng bûn." Lê dîsa jî Siyamend Haco, ku wek Kurdolog raportan li ser Kurdan ji bo dadgeh û dezgehên Almanî dinivîsîne, dibîne ku şaşitî ye ku Kurdek jî ji bo konferensê nehatiye vexwendin. Ew nebeşdarkirina kesekî kurd wek şaşitî bi nav dike û vê yekê wiha şirove dike: "Ramana Konferensa Îslamê ew e ku ji hemû miletên Misilman ên nişteciyên Almanyayê nûnerek beşdar bibe. Li Almanyayê 800 hezar Kurd hene, ji wan 90 ta 99 ji sedî Misilman in." Ji ber ku Kurd wek kêmnetewe li Almanyayê nayên pejirandin, ew fermî wek Tirk, Ereb û Faris tên qeydkirin.



Dîmenek ji Konferensa Îslamê ya Almanî li Berlînê

Beha Mihemed vê yekê qet fêm nake. Ew dibêje ku ew pir ji wê yekê aciz e ku rêxistinên din di Konferensa Îslamê ya Almanî de wilo dikin mîna ku ew nûnerên Kurdan in jî. Ji ber vê yekê ti hêviya wî ji Konferensa Îslamê tune ye. Ew teqez dike ku ti pirsgirêkên olî yên Kurdan tune ne û Kurd rêza tevaya olan dikin. Beha Mihemed berdewam dike û dibêje: "Ez bi hêvî me ku Kurd xwe dûrî rêxistin û komeleyên Erebî û Tirkî yên olî bixin. Armancên wan ne olî ne, lê belê neteweyî ne." Ji bo Beha Mihemed û nûnerên komele û dezgehên Kurdî tenê hêviyek dimîne, ew jî ku wê rojek bê û Kurd jî wê di çalakiyên giring mîna Konferensa Îslamê ya Almanî de beşdar bibin.

Ji ber redkirina mafê penaberiyê

# Kurdên Brîtanya rastî pirsgirêkên civakî tên

**Hawar Ebdulrezaq** Hewlêr

Tawanên wek destdirêjiya seksî, kuştin, ajotina otomobîlan bêyî molet, di nav penaberên Kurd de zêde dibin, bi baweriya hin kesan ev tişt navê Kurdan xerab dikin û dibin sedemê dersînorkirina wan. Hin penaberên Kurd dibêjin "Li gor neteweyên din, pirsgirêkên Kurdan kêmin." Lê Hikûmeta Brîtanî wiha dike hin Kurd karên xerab bikin.

Selam Ebdulla xelkê Silêmaniyê ye û ev zêdeyî 6 sala ye li Brîtanya dimîne û paşeroja wî ne xuya ye. Selam red dike ku kêfa Kurdan ji pirsgirêkan re tê û van tometan tenê wek hincetên Hikûmeta Brîtanya ji bo dersînorkirinê wesif dike: "Ger Kurd ne neçar bin, şer nakin. Lê ger tu zererê bigihîne Kurdan, Kurd tola xwe distînin."

Serokê Federasyona Penaberên Îraqê, Deştî Cemal, ji bo Rûdawê ragihand: "Hemû kes tawanan encam didin û yasayan binpê dikin, wate ew ne taybetmendiyeke penaberên Kurd e."

Selam diyar kir ku niha 14 penaberên Kurd li wê kampê hene û behsa reftara ne wekhev a berpirsên kampê kir: "Hinek Kurdan li vê kampê dilîstin, hin kes hatin û şer kirin. Pasewanên kampê Kurd xistin hundir û koma din li derve bi wan dikeniyan."

Li gor daxuyaniyên Deştî Cemal, heta sala 2008'an nêzîka 8 hezar penaberên Kurd li jêr gefa dersînorkirinê bûn, hêjî zêde dibe û bersivên negatîf bo daxwazên penaberên Kurd jî zêde dibin.

Bi baweriya Deştî Cemal, derketina pirsgirêkên civakî ji aliyê Kurdan ve girêdayî rewşa pisîkologîk a Kurdan e: "Rewşa derûnî û neheqiyên ku li Kurdan tên kirin, wan rastî pirsgirêkan tîne."

Serkewt ê 30 salî xelkê bajarê Silêmaniyê ye û derçûyê zanîngeha Selahedîn e, wî diyar kir ku tenê 10 hefte mane ew xwendina xwe ya master xilas bike, lê dema hefteya borî çûye îmzeya xwe ya heftane bike, ji aliyê polîs ve hatiye binçav kirin û niha li vê kampa penaberan e. Serkewt dibêje ji ber rewşa wan a aborî ne baş e û rastî reftarên neheqiyê jî tên, loma carina xeletiyan dikin.



Hejmareke ciwanên Kurd ên penaxwaz li bajarê Fransa, Calais çaverêyî derbasbûna bo Brîtaniya dikin

Navborî nêzîka 10 salane li Brîtanya ye û dixwaze mastera xwe ya biologiyê bidest bixe, dema ew çû wî welatî mafê penaberiya mirovî wergirt û piştre jê hat sitandin û ew niha li jêr tirsa dersînorkirinê de ye: "Ger hemû mafên Kurdekî jê bên standin, helbet ew ê karên ne yasayî bike."

Serkewt çîroka girtiyekî Kurd wiha ji bo Rûdawê vedibêje: "Wezareta Hundir a Brîtanya moleta karkirinê jê sitandibû. Kesê Kurd piştre çû mohleteke kar a sexte dirust kir û kar kir. Wezareta Navxwe wî dibînin û binçav dikin. Wezaret jê re dibêje te çar yasa binpê kirine, yekem tu bi rêyeke ne yasayî hatiye; duyem mafê penaberiya te hatiye redkirin û tu li vir mayî; sêyem te kerteke kar a sexte dirust kiriye û çarem te ev kert bikar aniye."

Deştî Cemal dibêje dersînor kirin ne girêdayî pirsgirêkane : "Pêwîstiya Hikûmeta Brîtanya bi hincetan heye bo dersînorkirina penaberan. Partiyên desthilatdar li Kurdistanê jî bo xatirê qazanc û berjewendiyên xwe yên siyasî, aborî û bi fermî naskirina desthilata wan, xwe dispartin heman hincetan ji bo wergirtina penaberên dersînorkirî."

Serokwezîrê Spanya bersiva 1075 kurdên rûniştvanên Spanya da:

# Em çavdêriya rewşa xembar a mafên mirovan li Sûriyê dikin

Serokê Dîwana Serokatiya Hikûmeta Spanya nameyek ji Kurdên Spanyayê re şand


Elî Şemdîn


Fûad Elîko


Bêtirî 100 girtiyên PYD'ê û bi dehên din di girtîgehên Sûriyê de ne

**Zinar Ala / Besam Mistefa**
Madrid - Hewlêr

Rêxistinên navnetewî, sazî û rêxistinên parastina mafên mirovan li Sûriyê daxwaz ji Hikûmeta Sûriyê dikin ku ew rewşa girtiyên siyasî baştir bike û wan ji tawanbarên din cuda bike. Hikûmeta Sûriyê jî girtina çalakvan û siyasetvanên Kurd û Ereb berdewam dike.

Kesatiya dawî ku li ser asta navnetewî dilgiraniya xwe nîşan daye, Serokwezîrê Spanya José Luís Rodríhuez Zapatero bû ku welatê wî serokayetiya gera niha ya Yekîtiya Ewrûpa (YE) dike. Nîgeraniya wî piştî wê yekê hat ku Kurdên rûniştvanên Spanya di meha Çile ya borî de nameyek tevî 1075 îmzeyan ji navborî re şandin û daxwaz kirin ku Hikûmeta Spanya givaştinan bixe ser Hikûmeta Sûriyê ji bo azadkirina zîndaniyên ku ji ber ra û nerînên xwe tên girtin.

Serokê Dîwana Serokatiya Hikûmeta Spanya, José Enrique Serrano Martínez, bersiva nameya Kurdên rûniştvanên Spanya ku ji Serokwezîrê Spanya re hatibû şandin, da. Serokê Dîwana Serokayetiya Hikûmeta Spanya dibêje, wê Spanya hewldanan bike ku binpêkirinan rawestîne: "Sûriyê welatekî nêzîkî me ye û dost e. Spanya wê hemû fersendên di destê xwe de bikar bîne ji bo livandina binpêkirinên mafên mirovan li pêşiya desthilata Sûriyê ku hikûmet û hevwelatiyên me xembar dike."

Di beşeke din a vê bersivnameya ji bo çalakvanên Kurd de hatiye, wiha tê gotin: "Spanya hem bi navê Yekîtiya Ewrûpa, hem jî bi navê xwe hestiyariya xwe ji bo mafên mirovan û girtiyên raman û nerînê nîşan dabû. Encamên berçav ên piraniya van hewldanan hebûn. Em ji we re tekez dikin ku Hikûmeta Spanya wê şopandina bûyerên xembar ên mafên mirovan li Komara Erebî ya Sûriyê bidomîne."

Rewşa girtiyên siyasî li Sûriyê pir xerab e. Hejmareke zêde ya girtiyan demên dirêj di zîndanan de dimînin heta tên dadgehî kirin, gelek ji wan bi nexweşiyên cuda dikevin. Sekreterê Partiya Yekîtî ya Kurd li Sûriyê, Fûad Elîko, derbarê rewşa girtiyên siyasî li Sûriyê ji bo Rûdawê ragihand: "Hinek girtî di rewşên pir xerab de ne, lê rewşa hinek girtiyan jî baş e û dikarin li gel xizmên xwe baxivin." Elîko wek mînak bal kişand ser rewşa girtiyên hizba xwe û got ku Tehsîn Xêrî Memo heta niha wendayî ye. Navborî daxuyand ku rewşa hersê serkirdeyên Yekîtî jî, Hesen Salih, Marûf Mela Ehmed û Mihemed Mistefa jî xerab e: "Nahêlin kes û xizmên wan jî wan bibînin." Hersê serkirdên Yekîtî yên navhatî niha ji bo Dadgeha Ewlekariya Dewletê ya Bilind hatine veguhestin û biryar e di 6'î Hezîran a 2010'an bên dadgeh kirin.

Endamê Komîteya Navendî ya Partiya Pêşverû ya Demokrat a Kurd li Sûriyê, Elî Şemdîn, di daxuyaniyekê de ji bo Rûdawê behsa rewşa xerab a girtiyên siyasî li Sûriyê kir û got ku girtî di rewşeke pir xerab de dijîn û ji civak, xizm û malbatên xwe tên veqetandin.

Heta niha serjimêriyeke hûr derbarê hejmara girtiyên siyasî, yên ra û nerînê û herwiha hejmara Kurdan bi giştî li Sûriyê tune. Hinek saziyên mafên mirovan dibêjin 17 hezar wendayên şerê desthilat û Partiya Îxwanin Misilmîn (Birayên Misilman) ji destpêka 1980'an de hene, bi hezaran girtiyên Birayên Misilman û bizavên Îslamî, herwiha girtiyên Kurd û Komunîst jî hene.

Fûad Elîko ku berê endamê Parlamena Sûriyê bû, eşkere kir ku bidestxistina serjimêriyan derbarê hejmara zîndaniyan zehmet e, lê got: "Hejmara girtiyên PYD ku ser bi PKK'ê ne û ya Îslamiyan pir e. Niha zêdeyî 100 girtiyên PYD'ê, 13 girtiyên 'Grûpa Daxuyaniya Şamê', 9 girtiyên Partiya Yekîtî ya Kurd li Sûriyê, 8 girtiyên Partiya Azadî ya Kurd li Sûriyê hene li gel Berdevkê Şepêla Pêşeroj a Kurd li Sûriyê, Mişel Temo, ku niha li girtîgehên Sûriyê ne. Tê texmîn kirin ku girtiyên tevgera siyasî ya Kurdî û Daxuyaniya Şamê, nêzîka 35 kesan bin."

Elî Şemdîn ku niha li Başûrê Kurdistanê dimîne diyar kir, zehmet e îstatîkeke dirust û eşkere derbarê hejmara girtiyên siyasî li Sûriyê bidest bikeve: "Hejmar ne giring e, ger mirovek tenê jî bê girtin wê zererê bide rewşa demokrasiyê li Sûriyê û navê rêjîma wê li pêş çavê civaka navdewletî reş bike."

Karbidestên Sûriyê bi mebesta sivikirin û biçûkxistina girtiyên siyasî, wan tevî girtiyên din dike û bi heman awayî reftarê li gel wan dike. Piştî daxistina girtîgeha "Meze" di 13'ê Îlon a 2000'an de ku zîndaneke bi tirs bû, niha zîndana Seydnaya bûye "keleha tirsê" ya zîndaniyên siyasî li Sûriyê.

Ew zîndan li tenişt bajarê Şamê ye û di sala 1987'an de hatiye vekirin û têra nêzîka 15 hezar girtiyan dike. Girtîgeha ku di bingeh de leşkerî ye, ji sê qatan pêk tê û li her qatekê 20 salonên girtiyan hene û li qata yekem 100 zîndanî hene û hejmara herî zêde ya girtiyên siyasî li xwe digre.

Endamê Meclîsa Emîndarên Rêxistina MAF a Mafên Mirovan li Sûriyê, Îbrahîm Yûsiv, dibêje êdî dem hatiye proseya "Spîkirina Girtîgehan" li Sûriyê destpê bike û ji bo Rûdawê dibêje: "Tevî hemû zextên navnetewî, Sûriyê girtina çalakvan û siyasetvanên Kurd û Ereb didomîne, lê divê dawî li vê pirsgirêkê bê, girtîgehên Sûriyê bên "spîkirin" û girtiyekî siyasî jî di hundirê zîndanê de nemîne." Yûsiv ku mamosteyê xwendingehê ye û çend caran hatiye binçav kirin, wiha axaftina xwe qedand: "Rêxistina MAF wê hemû bûyerên girtina siyasetvan û çalakvanan ji bo raya giştî belav bike. Niha jî em hewl didin serjimêriyeke dirust a girtiyên siyasî li Sûriyê amade bikin."

# Bizîşkên Kurd civîna xwe ya salane li Moers pêk tînin

**Seyîdxan Kurij**

Komela Bizîşkên Kurd li Almanya (Vereinigung Kurdischer Ärzte in Deutschland) di rojên 29 û 30'ê Gulan a 2010'an de li bajarê Almanya Moersê civîna xwe ya salanê pêk tîne.




Komela Bizîşkên ji Kurdistanê di 26'ê Çileya sala 1978'an de li Ottweiler hatibû damezirandin. Lê di 9'ê Gulan a 1992'an de navê komelê hat guhertin û ji wê gavê vir ve navê wê bûye Komela Bizîşkên Kurd li Almanya.

Li gor daxuyaniya serokê komelê, wan her sal li Berlînê civîna xwe ya salane li dar dixist, lê ji ber ku di herema Nordrhein Westfalenê (NRW) gelek endamên wan hene, komelê biryar girt ku îsal civîna xwe li NRW pêk bîne.

Komela Bizîşkên Kurd li Almanya di havîna 2009'an de bi hevkarîya Bizava (Odeya) Pizîşkên Amedê li Amedê bi navê "Rojên Tenduristiyê yên Mezopotamyayê" konferansek pişeyî û zanistî pêk anîbû.

Di civîna îsal de wê encamên lêkolînên nû li ser hinek nexweşiyên wek asthma, hîpertansiyon (Hypertonie) û cerahiyê bên pêşkêşkirin.

Li gor serokê komelê Dr. Rassoul Fakî, wê ji Odeya Pizişkên Amedê şandeyek doktoran beşdarî civîna îsal bibe. Komela Pizîşkên Kurd li Almanya wê di vê civînê de rêvebiriya xwe ya nû ji hilbijêre.

Navnîşana cihê civîna Komela Bizîşkên Kurd li Almanya ev e:
Hotel Van der Falk, Krefelderstr. 169, 47447 Moers. Civîn 29'ê Gulanê di seet 14:00 de dest pê dike.
Ji bo pêwendî: 02841-1460

# "Recimkirina Soraya" Îran aciz kir



Tarîx 15 Tebax'ê 1986 e. Cîh: Kupayeh, Îran. Soraya Manutchehri, diya 7 zarokan di 36 saliya xwe de, bi keviran tê kuştin.

**Nurettin Akad**

Di nav malperên înternetê de bi awayekî tesadûfî ez rastî vî fîlmî hatim: "Recimkirina Soraya".

Di nava bi sedan fîlmên min dîtiye de, ti fîlm weke vî fîlmî ku hovitiyeke mirovatiyê ew çend bi eşkereyî radixîne ber çavan min nedîtibû. Sahneyeke hovitiyeke wiha di fîlma "Çîleya Îsa" jî hebû. Çi tesadûfe ku Jim Caviezel ê di fîlma "Çîleya Îsa" de rola Hz. Îsa dilîze, di fîlma "Recimkirina Soraya" de jî bi rola rojnamevantiyê dilîze. Belê em behsa hovitiyeke weke recimê dikin. Jixwe derhênerê Îranî Cyrus Nowrasteh bi taybetî hewil daye ku sahneya kevirkirinê ango recimkirinê bi awayekî neyê jibîrkirin bide nîşandan. Her wiha ji ber vî aliyê xwe ve Îranê heta dawî hewil da ku fîlma "Recimkirina Soraya" ku 14'ê meha Gulanê de kete sînemeyan, were astengkirin û yan jî were sansûrkirin. Îran her çend ev hewildanên xwe di ser Tirkiyeyê re meşand jî fîlm nehate astengkirin.




Çîroka fîlm xwe dispêre serpêhatiyeke rastîn. Çîroka fîlm ji pirtûka nivîskar Fereidoune Sahebjam ve hatiye stendin. Nivîskarê pirtûka "The Stoning of Soraya M." (Recimkirina Soraya M.) piştî ku ev pirtûka xwe di sala 1994'an de da çapkirin, di sala 2008'an de, di 75 saliya xwe de, bêyî ku bibîne pirtûka wî bûye fîlm, jiyana xwe ji dest da.



Fîlm ji niha ve 4 xelat wergirtin û ji gelek xelatên din re jî namzet e. Fîlm bi zimanê Farisî ye û diyalogên navbêra Zehra û rojnamevan de bi îngîlîzî derbas dibin.

Ji ber ku fîlm xwe dispêre serpêhatiyeke rastîn, min girîng dît ku ji çîroka fîlm zêdetir, ez agahiyên rastîn ên di pirtûkê de derbas dibe û di fîlm de tên nîşandan parve bikim.

Jina tê recimkirin navê wê Soraya Manutchehri ye. Di sala 1950'yî de li Îranê ji dayik bûye. Diya 7 zaroka ye. Di 13 saliya xwe de, bi berdêlî didin Ghorban Alî yê 20 salî û xwedî sabiqe. Soraya di zewaca 23 salan de 9 caran ducanî dibe lê belê ji ber lêdana mêrê wê 2 bebekên wê mirî diwelidin. Mêrê wê di serdema Hûmeynî de weke mirovekî bê rehm û sadîst di beldeya cîran de weke qardiyan dixebite. Alî li wê beldeya çavê xwe bera keçeke 14 salî dide. Dixwaze pê re bizewice lê ew naxwaze barê jina xwe ya kevin jî bide ser pişta xwe, lewma li rêyekê digere ku ji Soraya xelas be. Bi bêbextiyeke weke bêdilsoziyê û zînayê tewanbar dike û dawiyê de jî bi ser dikeve. Bê gûman çawa bi ser dikeve mijareke din a balkêşe.

## Prof. Şakiroyê Xudo li Bottropê hat bîranîn

**Roniya Alan** Bottrop

Roja 22'ê vê mehê Federasyona Komelên Kurdistanê (KOMKAR-EU) li Bottropê ji bo bîranîna dîroknasê Kurd Prof. Şakiroyê Xudo konferansek amade kir. Di konferansê de çend kesên naskirî yên weke nivîskar Wezîrê Eşo, serokê KOMKAR-EU Kovan Amedî, Dr. Mihemmed Zeyno, Dr. Eskerê Boyik, nivîskar Yilmaz Çamlibel, Serokê Komela Laliş Pîr Xidir û Ferîk Faruk jî amade bûn.

Di axaftina xwe de nivîskar nivîskar Wezîrê Eşo got ku "Şakiroyê Xudo di wê rewşa dijwar de jî bi taybetî li ser tevgera rizgarîxwaza Kurdî ya bi serokatiya Mistefa Barzanî xebatên akademîk kirin." Eskerê Boyîk jî pesnê xebata Şakiroyê Xudo da û got ku "Di sala 1972'an de Yekîtiya Sovyetê (YCSS) û Îraqê peymaneke dostatiyê pêk anîn, êdî li gor dîtîna fermî ya YCSS tevgera Kurd ne li gorî berjewendiyên wan bûn. Lê Şakiroyê Xudo xebata xwe li ser tevgera Kurd berdewam kirin."

**Prof. Şakiroyê Xudo Mihoyî kî ye?**

*Şakiroyê Xudo Mihoyî di 1930'an li Ermenistanê ji dayik bû. Piştî xwendina dîrokê, wî di Riya Taze de rojanamevanî kir. Di sala 1971'an de kete Enstûtûya Rojhilatzaniyê ya Akademiya Ermenistanê û paşî li zanîngehê dersên dîroka Kurdistanê dida. Sala 1981'an bû profesor û heta 1994'an li Enstûtûyê serokê beşa Kurdnasiyê bû. Di sala 1990'an de bû endemê Akademiya Ermenistanê ya zanestî. Şakiro Navenda Lêkolînên Kurdî demezirandin û bû Serokê wê. Prof. Şakiroyê Xudo li sala 2004'an xelata zêrîn a Pîremerd li Kurdistan a Federe wergirt û di sala 2007'an de wefat kir.*



**Hekîm Sefkan**

## Bilêvkirina gotinan

Dikisyon, perwerdeya bilêvkirina gotinan, giringtirîn mercê stranbêj, şanoger û pêşkşevanên radyo û televizyonan e. Di hêla hunerî de, Kurd ji perwerdeyê bêparin û ji xwe jê heznakin. Ji bo ku di hêla ensteromentan de, neheqî li başûr neyê kirin heta radeyeke bilind perwerdeyî hatiye kirin, lê mebesta min li vir perwerdeya dikisyonê ye û li ser hemû Kurdan e.

Eger ku em li pêşkêşevanan temaşe bikin, guhdar bikin, emê tê derxin ku yan ew piştre fêrî Kurdî bûne yan jî bilêvkirineke pir xerab li cem wan heye. Herwiha şanogerên ku em wan li ser dikan dibînin, pir kêm in ku mirov kare bi deng û bilêvkirina wan ve bê girêdan. Bi taybet ev pirsgirêk li cem stranbêjan pir bi tofe, dibe ji ber ku stranbêjên me pir in, lewra jî bêtir ew dikevin ber çavan.

Berî du salan min ji hemû firmayên ku albûmên Kurdî derdixin, 100 berhem civandin, mebesta min jê ew bû ku lêkolînekê li ser wan bikim. Berhemek çiqasî bê şaşî derdikeve? Nivîsên tekstan (rastnivîs), gotinên stranan, melodî, berhem yên kê ne, bilêvkirina stranan û di stranekê de çi bê bîra mirov. Tenê yek berhem bê şaşî derneket, ya min jî di nav de.

Ji xwe mijara me bilêvkirina gotinê ye, loma ezê tenê wê bidim destê xwe û tiştên din ji careke din re bihêlim. Di zimanê me de û di gelek zimanên din de, tenê hinek tîp hene ku mirov kare dirêj bike, weke a, û, e, î .. incex gelek stranbêj hatine û tîpa M, D dirêj kirine. Hinek tîpa L pir qalind bi kartînin, hinek tîpa H, weke H ya Erebî pir hişk û ji gewriyê derdixin. Ji xwe li cem hinekan ku diyare bi Kurdî nizanin, tîpa Q, weke K bikartînin.

Pirsgirêkeke mezine, lê veşartiye. Kîjan gotin, çawa derdikeve, li gorî wateya xwe, li gorî melodiyê, li gorî ritmê, li gorî cihê wê di hevokê de, divê çawa nerm yan jî hişk be. Herî zêde ev kêmanî li cem wan kesan pir derdikevin pêş yên ku ne bi zaraveyên xwe distrên, yan jî stranê tenê ezber dikin, ne ku wateya wê baş têdighêjin. Dibe ku em vê yekê sivik bibînin, incex ev yek bedewbûna stranê ye, xemla gotinan bilêvkirina wan in.

Derxistina gotinê rast ji dev, hem xweser li dil dide, hem jî guh naêşîne. Bi dehên caran em stranê bi paş ve tînin ta em bikaribin wê gotinê fambikin, ne ku wateya wê pir kûr e na, lê ji ber ku bilêvkirina stranbêj, gotinê dikuje, ji wateya wê derdixe, gelek caran jî bilêvkirina stranbêj wateyeke cuda dide gotinê.

Berê, ne digotin dengê filan kesî xweşe, digtin filankes çi zane bistrê. Û ew zanebûn bi xwe bilêvkirina gotinan, rastderxistina tîpan e.

# Rûşen rexneyên hişk bi mîzahê li civakê dike

Evdile Koçer

Karîkatûrîsta ciwan Rûşen Sarilî (24) ev demek e di rojnameya Azadiya Welat de bi karîkatûrên xwe yên li ser serpêhatiyên Xaltîka Eyşo bala xwendevanan dikişîne ser xwe. Henek û laqirdiyên Xaltîka Eyşo gelek caran dibe mijara sohbet û galegalên xwendevanên Kurdî.

Karîkatûrîsta henekxweş Rûşen Sarilî, di derbarê jiyana xwe û hunera karîkatûran de ji Rûdawê re axivî. Sarilî, diyar kir ku hostayê wê yê karîkatûriyê jixwe yek e û ew jî bavê wê ye, “Min îlhama xêzkirina karîkatûran ji wî werdigirt. Bavê min wêne çêdikir û ji hevalên xwe re diyarî dikir. Min jî dixwest ez wek bavê xwe wêneyan xêz bikim û bi vî awayî ez jî ketim nava vî karî. Ew bixwe ji navçeya Farqînê ye, lê ev deh sal in ku li Amedê dijî. Xwe jî wek kesek mirovhez bi nav dike.


(Wêne: Rûdaw)
Rûşen Sarilî



### “Xaltîka Eyşo êdî bûye parçeyek ji jiyana min”

Dema ku wê dest bi xêzkirina karîkatûran kiriye, heta niha 133 karakter afirandine û di dosyeya xwe de bi cîh kirine. Lê ji bo ku bikariya bi Azadiya Welat re bixebite, jê re karekterek nû lazim bûye. Hevalên wê jî ji nav hin karîkatûran karekterê Xaltîka Eyşo û malbata wê hilbijartine. Piştî hingê jî hema bêje her roj serpêhatî û macerayên nû yên Xaltîka Eyşo dikevin ser karîkatûrên Rûşenê, “Xaltîka Eyşo êdî bûye parçeyek ji jiyana min. Pirî hevalên me yên xebatkar jixwe bi vî navî min didin naskirin. Xaltîka Eyşo jinek azad e. Ji ber ku berxwedêr e û serî ji kesî re danayne. Şîroveya wê ya li ser bûyeran gelekî kêfa min jê re tîne…”

Li ser hunera xwe ya karîkatûran jî dibêje ku karîkatûr hunerek azad e û wiha pê de diçe: “Ji bo min nerînên erênî, neyînî, rexneyî bi kurtasî hestên xwe û gelê xwe, zilma ku ji her hêlê ve li ser gelê me tê kirin bi riya karîkatûran tînim zimên. Hunera karîkatûrê ji her kesî re vekiriye, ji 7 heta 70 salî. Din nav van de rewşenbîr jî û kesên ku tenê xwendinê zanibin jî li gorî nerîna xwe û fêmkirina xwe tamê jê digirin...”

Em jê dipirsin ka li ser şêweya karîkatûrên mîzahî çi difikire, Sarilî dibêje ku ji bo wê karîkatûr jixwe mîzah e: “Lê divê di mîzahê de mirov dikaribe di gel kenandinê xwendevanan bifikirîne jî.

Lê Rûşena ciwan, car caran ji reaksiyonên xwendevanan bêzar dibe: “Gelek caran ev astengiya xwesansûrkirinê derketiye pêşiya min. Pirî caran ez dixwazim rewşê bi hin gotinan şîrove bikim, ji ber rexneyên ku wê bên ez nikarim û li ciyê van gotinan “...” datînim.”

### “Karîkaturîsta Kurd a yekem jin ez im”

Ew gelek karîkatûrîstên navdar ên dinyayê diecibîne, lê ji nav karîkaturîstên Kurd herî zêde kêfa wê ji xêza Sefer SELVÎ û Doğan GÜZEL re tê. Bi vê ve grêdayî em jê dipirsin ka xeyala wê ya herî mezin çi ye: “Xeyala min ew e ku ez jî di nav rûpelên dîroka me Kurdan de cî bigirim, ji ber ku karîkatûrîsta Kurd a yekem jin ez im...”

Di dawiyê de jî ji xwendevanên Rûdawê re serpêhatiyek xwe vedibêje: “Nas û dostên min ku bibînin ez karîkatûrên xwe xêz dikim, pênûsa min ji min distînin, li quncik mincikan xêzên hûrik çêdikin da ku di rojnameyê de derkeve û ji derdora xwe re bibêjin; “min ev xêz çêkiriye.”

---

# Zarokên Nisêbînê xwe li Textê Reş girtin


(Wêne: Rûdaw)
Piştî banga “Werin zimanê Kurdî, werin zimanê Kurdî!” zarok li dora wî kom bûn û dest bi dersê kirin

Sengul Ogur Nisêbîn

Bi minasebeta Cejna Zimanê Kurdî îsal li gelek deveran çalakî hatin lidarxistin. Li hin deveran bi daxuyaniya çapemeniyê, li hin deveran bi meş, panel û konseran Kurdan cejna zimanê Kurdî pîroz kirin. Yek ji van deverên ku cejn bi awayekî watedar lê hate pîrozkirin jî Nisêbîn bû.

Di 18 û 19’ê Gulanê de, Suleyman Tekîn ê endamê Kurdî-Der’a Nisêbînê ji bo ku alfabeya Kurdî nîşanî zarokên Nisêbînê bide, textê reş avêt pişta xwe û berê xwe da taxên Nisêbînê.

Mîna mêşên ku xwe li hingiv digirin, zarokan xwe li textê reş girtin û bala xwe dane alfebeya Kurdî ya ku di dibistanên ku lê dixwînin de nayê bikaranîn û qedexe ye.

Ji bilî naskirina alfebeya Kurdî, zarokên Nisêbînê hem li çîrokên Kurdî guhdarî kirin û hem jî zarokên ku karîn bersivên pirsên mamosteyê xwe rast bidin, bûne xweyî pirtûkên çîrokên Kurdî yên ku bo zarokan hatibûn amadekirin.

Piştî ku Suleyman Tekîn textê reş danî erdê û bang kir “Werin zimanê Kurdî, werin zimanê Kurdî!” zarok li dora wî kom bûn û dest bi dersê kirin. Dema ku tîp li ser textê reş dihatin nivîsîn zarokan peyvên ku bi wê tîpê dest pê dikirin digotin. Dema ku dor giha tîka ‘k’ yê, zarokan bi hev re ’Kurdistan’ qêriyan.

Derbarê mijarê de Suleyman Tekîn got ku ev demeke dirêj bû wî dixwest çalakiyeke bi vî rengî bike û bal kişand ser pişaftinê: “Zarokên Kurdan li dibistanan fêrî Tirkî dibin, di TV’yan de li fîlmên karton yên ku ji jiyana wan pir dûr in temaşe dikin. Bi kurtasî, zarok di temenekî biçûk de dikevin ber aşê pişaftinê. Bo vê jî min biryara çalakiyeke bi vî rengî da.”

Û wekî dawî jî Suleyman Tekîn got ku dive sazî û tevgerên Kurdan dakevin tax û kolanan û li wan deran zarokan fêrî Kurdî bikin.

---

# Heysem Yusif navê wî dinivîse lê Kurd behs nakin

Karzan Heyder Hewlêr

Hunermend Kawe Kawanî ku 15 sal dibe li Stenbolê dijî, alîkarî daye gelek hunermendên Kurdistanê ku ji bo tomarkirina berhemên xwe diçin Tirkiyê. Lê Kawe Kawanî giliya wêya ji wan hunermendan dike ku herî kêm behsa ked û mandîbûna wî dikin, di rewşekê de bê pere xizmeta wan kiriye.

Vê dawiyê Hunermend Kawe Kawanî bi gotina strana ‘Lêreme le Hewlêrê’ (Li vir im, li Hewlêrê) a hunermend Miheme Ehmed Erbîlî hat nav hunera strangotin û muzîka Kurdî. Kawanî ji bo Rûdawê eşkere kir ku di dema dahatû de wê ji bo du stranên xwe klîpêbê çêbike. Kawanî ku xwedî şîrketa Kawanî Production e, wiha axivî: “Bi sedema nebûna qanûnekê ji bo parastina mafê hunermendan, wê şîrketê nayînim Herêma Kurdistanê.”


Kawe Kawanî

Heysem Yusif yek ji wan hunermendên Ereb e ku hevalê nêzîk yê Kawan e. Di vê derbarê de Kawe got: “Herdema Heysem ji bo tomarkirina berhemên xwe tê Tirkiyê, tê cem min û ez jî alîkariya wî dikim, lê Heysem hevkariya min diparêze û rêzê ji min digre, hertim navê min li ser berhemên xwe wek alîkar û sebebek dinivîse.”

# “Ji sedî 90 zilamê Kurd diçe cehnimê”

## Bila biryara hezkirinê di destê keçekê de be, bila hevalê xwe bi xwe hilbijêre


(Wêne: Rûdaw)

Mela Fayîq

Pêxember dibêje “Jin wekhevê mêran e”, wek çawa tu çûyekî bi du perçan bikî, ti ferq di navbera herdu perçan de tune ye. Tenê ferqek heye, ew jî zayenda wan e, ev nêr e ew jî mê ye.

**Bonn (Rûdaw) –** Li Sûriyê gelek mela û oldarên navdar yên esil Kurd hene, wek mînak kenvemuftiyê Suriyê Muhamed Keftaro Kurd bû, her wiha olzanê navdar Muhamad Seîd Remdan Elbotî, çêkerên programên olî di televîzyona Suriyê de Ednan Şêxo û Merwan Şêxo û hwd. Hemû ev oldarên Kurd ketin xizmeta desthilata Sûriyê, lê li aliyê din jî hinek oldar doza mafên Kurdan kirin û rastî lêdan, mirin û sirgûniyê hatin, wek Şêx Meşûq Elxeznewî yê ku bi destê hêzên sixurên Sûrî hatibû îşkencekirin û kuştin. Û her wisa mela Fayiq Dilo yê ku zêdeyî 10 salan di sirgûniyê de dijî.

Mela Fayîq melayekî xwedî çandek dewlemend e, xwîn şîrîn û pêkenînên xweş jî dike, ew wek kesayetiyek oldar û serbixwe beşdarî çalakiyên Kurdan dibe lê herdem rihê Kurdperwerî di axaftinên xwe de diyar dike. Em li bajarê Bonnê rastî wî hatin û ev hevpeyvîn pê re çêkir.

**Rûdaw: Hûn kengî û li ku ji dayîk bûne?**
Mela Fayîq: Ez di sala 1960’an de li gundê Qirigolê / navçeya Bilbilê (Efrîn) ji dayîk bûme, ez ji eşîra Omkî me.

**Li gelek welatên Misilman mafên jinan têne binpêkirin, gelek jin li van welatan dawî li jiyana xwe tînin, her wiha nûçeyên kuştin û xwekuştina jinan li Kurdistanê jî bi dawî nabin, sedema vê yekê çi ye?**
Zulma ku li ser jinê tê kirin tişteke gerdûnî ye, lê pir mixabin rêjeya zulm û zora li ser jinê di civaka me de hîn mezintir e.

Min zulma li ser jina Kurd di bavê xwe de dîtibû, dema dê û bavê min ji palê (çinandina ceh û genim û hwd.) vedigeriyan û diketin hundirê malê, bavê min di cih de digot: Zênêêê (Zeyneb) çayekê ji me re çêbike. Dayîka min di çolê de weke bavê min dixebitî û piştî vegera malê diviyabû dîsa xebat li malê bikira. Ev zilmeke mezin bû.

Ez li dijî pirsa “Heqê jinan çi ye?” me. Kesên vê pirsê dikin jinan weke sinifekî din dibînin, Pêxember dibêje “Jin wekhevê mêran e”, wek çawa tu çûyekî bi du perçan bikî, ti ferq di navbera herdu perçan de tune ye. Tenê ferqek heye, ew jî zayenda wan e, ev nêr e ew jî mê ye. Jin însan e, heqê mêran çibe, heman maf ji jinê re ye. Qurana pîroz eşkere dibêje: “Mêr dibe, jin dibe, herdu berpirsiyarê hev in, dikarin emrên kirina qenciyê û qedexekirina xerabiyê bikin” yanî Quran eşkere dibêje ku jin dikare welatekî bi rêve bibe, jin dikare bibe serokwezîr û hwd. Di bin navê ol de li jinê van mafan qedexe dikin.

Quran ji bo keçan parek ji mîrasê nîşan kiriye, lê dema keçekek para xwe ya rewa ji mîrasê dixwaze, mixabin gotinên kêm liyaqî wê dibînin. Jê re dibêjin qehbik, çawa doz li bavê xwe vedike. Ez jî ji wan re dibêjim: Kesên keçên xwe ji mîrasê mehrûm dike, ew qehbik in!

Mêrên Kurd jinê ji van mafan bêpar dihele, jin serî li hikûmetê dide lê alîkarî nabîne, serî li civakê dide (malbat, eşîret, cîran) alîkarî û piştgirî ji kesekî nagire, vêca rêya çareseriyê û xelasiyê li pêşiya wê namîne, radibe dawî li jiyana xwe tîne, yan bi guleyekê an jî bi cehrê întîhar dike, yan jî xwe bidarve dike yan jî xwe dişewitîne. Berpirsiyarê van kuştinan civak e, bi taybetî civaka mêran e, bav e, bira ye, ap û xal e.

**Carekê we di axaftineke xwe de gotibû ku zilamê Kurd ji sedî 90 diçe dojehê, gelo ji bo çi?**
Rast e, min gelek caran di wazên xwe de gotiye: Zilamê Kurd eger li ser vê zihniyetê bimîne ji sedî 90 diçe cehnimê û jin di van hal û rewşê xwe de ji sedî 90 diçe cinetê.

Hûn çawa bin, wisa jî tê serê we hukimdarino, me welatê ti kesî talan nekiriye, me ti komkujî nekirine, zilma me kirî çi ye? Zilma em di hundirê malê de dikin, zor û zilma me li ser pîrekê kirî sebeba bindestiya me ye.

### Zewaca bêdil û bi zorê

**Li Kurdistanê hîn malbat hene ku zewaca bi zorê li ser keçekên xwe ferz dikin, hûn çawa vê yekê dibînin?**
Ez ji wan re dibêjim: Bila biryara hezkirinê di destê keçekê de be, bila hevalê xwe bi xwe hilbijêre. Zewaca bêdil û bi zorê bi ser nakeve, zewaca plankirî ji aliyê malbatan dîsa bi ser nakeve.

Demekê di gundê me de jinek bi evîndarê xwe re reviyabû. Ji ber wê şerekî giran çêbû û 40 salî domand, nêzîkî 40 kesan jî ji ber vî şerî jiyana xwe ji dest dabûn. Ji bo çi? Niha jî em dibihîsin filan keç ji mala bavê xwe reviya, gelo ji bo çi direve? Ji ber ku tu zilamekî li ser wê ferz û zor dikî.

Divê em çi bikin? Tenê divê em şîret û tembî bidin keçekên xwe, zora ku li ser wan bê kirin bandoreke negatîv dike û her wiha encamên xerab bi xwe re tîne.

### Namûsa keçan û lawan

**Di civaka Kurdî de ji lawan re her tişt serbest e, ew diçin dîskotekan, heya dawiya şevê dereng vedigerin mala xwe û gelek caran li derveyî malê radizin, lê ji bo keçikan her tişt qedexe ye û gelek caran bi navê “parastina namûsê” têne kuştin. Ji bo çi ev cudahî tê kirin?**
Mixabin ev tişt di civaka Kurdî de heye, ev zora li ser keçan sedemekî sereke ye ji sedemên xweşewtandinê û xwekuştinê. Dema em dibin bend li hemberî evîna keç û lawan, nemaze evîna keçên xwe, ev dihêle ku ew bikevin bin bandora depresyonê û piştre dawî li jiyana xwe bînin. Wek bav, tenê delametek min heye ku ez keça xwe xwedî û perwerde bikim heya temenekî, ew xwedî biryara xwe ye. Kuştina bi navê parastina namûsê bi carekê nayê pejirandin. Tiştekî din heye, gelek xortên Kurd lawîtiya xwe, berî zewacê, wenda dikin, kesek ji wan nayê kuştin. Eger keçaniya qîzan namûs be, lawîtiya xortan ji bo çi ne namûs e?

### Biryara Parlamena Kurdistanê derbarê pirjiniyê de

**Hûn çawa li meseleya pirjiniyê li Herêma Kurdistanê dinêrin?**
Ez biryara Parlamena Kurdistanê derbarê pejirandina yasaya pirjiniyê pir çewt dibînim, ev neheqiyeke mezin li dijî jinan e. Zilmeke ku nayê qebûlkirin, hêvîdar im ku paralamenter dîsa li hev bicivin û ji bo betalkirina vê yasayê deng bidin. Quran dibêje hûn dikarin bi du, sê û çar jinan re jî bizewcin lê eger we wekheviyeke di navberê wan de çêkir, ev jî tiştekî ne gengaz e. Qet ne mumkin e ku zilamek di heman demê de hestên xwe di navbera du jinan de parve bike, ti mêr li ser erdê xwedê nikare di heman demê de edaletê navbera du jinan bike.

**We gelek salan Serokatiya Hereketa Îslamî ya Kurdistanê kiribû. Ji we re digotin Mela Abudllah, niha dîsa navê Fayiq Dilo zindî bû ye, ew navê ku hûn li Efrînê pê dihatin naskirin, sedema vê yekê çi ye?**
Wiha ye, navê min yê rastîn Fayîq e. Dema ez ji dayîk bûme Kurdekî bi navê Fayîq Axa li Şamê parlamanter bû, ji ber wî navê Fayîq li min kirin. Em vegerin ser navê Abdullah, dema min dest bi xebata xwe di nav Hereketa Îslamî ya Kurdistanê kiribû, hevalên rêxistinê ev nav ji min re pêşniyar kirin û wiha ez bi vê navî derdiketim pêşberî çapemenî û gel.

Ev bûn çend sal min dev ji hereketê berdaye, ji ber ez gihiştim baweriyeke ku ti mirov nikare di bin baskê rêxistinekê de bîr û baweriya xwe bi serbestî bêje, herdem divê li gorî berjewendiyên rêxistin û hakimdaran tevbigere. Ez niha dîsa tevlî çalakiyên Kurdan dibim lê weke kesekî serbixwe.

**Melatî û cigarkêşî, hûn ji zû de cigarê dikşînin?**

Ji zarokatiya xwe de, dema ez 12 salî bûm jina Fayîq Axa qalûnek dabû bavê min û got ev diyarî ji bo kurê te Fayîq e, ew qalûn jî bû sedema fêrbûna min ji kişandina cigarê re. Çigarkêşî cerîmeteke siyasî, tenduristî, aborî, civakî û mirovahî ye. Niha em rojê 4 - 5 Euro li ser kişandina çigarê dişewitînin. Em van peran bidin kîjan malbateke li Kurdistanê, wê gelek alîkariya wan bike, mixabin ev kêmaniyeke min e.

**Hevpeyvîn: Zinar Ala**

---

Li gor rapirsiyekê:

## Ji sedî 57 ji xelkê Kurdistanê piştgiriya pirjiniyê dikin

**Soran Behaedîn** Hewlêr

Pirjinî yanî mêr zêdeyî jinekê bîne, di ola Îslamê de bi mercê dadperweriyê rê dide mêran heta çar jinan bînin. Lê di ola Cihûtî û Mesîhî de pirjinî qedexeye. Pirjiniyê di van salên dawî de li Kurdistanê gengeşeyek zêde di parlamen û civaka Kurdî de anî holê.

Rêxistina Point bi rêya dabeşkirina hezar forman ankêtek li parêzgehên Hewlêr, Dihok, Silêmaniyê, Kerkûk û Musilê li ser pirjiniyê çêkir. Li gor encamên ankêtê, ji sedî 57’ê beşdaran piştevaniya pirjiniyê dikin, ji sedî 39 li dijî wê ne û ji sedî 49 dibêjin pirjinî karekî lojîkî ye.

Di vê rapirsiyê de, ji sedî 38’ê beşdaran dibêjin mêr dikare li gel jinên xwe dadperwer be û ji sedî 51 jî dibêjin mêr nikare dadperwer be. Bi baweriya ji sedî 35’an jî mêr jinek din bîne kêfxweş dibe, lê ji sedî 51 bawer dikin mêr zêdeyî jinekê bîne xembar dibe.

Şeyma Elî (25) ku hê mêr nekiriye, li dijî nemana pirjiniyê ye, piştevaniya mabûna wê dike û bi baweriya wê pirjinî tiştekî baş û asayî ye ku mêr jina dûyem bîne. Li gor Şeyma, gelek mêr karin li gel hemû jinên xwe dadmend bin: “Lê mêrê xerab nikare dadmend be, loma mafê mêrên ne dadmend nîne jina duyem bînin.”

Wekîlê AKP'ê yê Amedê Abdurrahman Kurt:

# Xala bingehîn a demokrasiya Tirkiyê pirsa Kurd e

**Birêz Kurt, AKP di herêmê de dengek bilind stend. Gelo xwezî çi bûn û AKP bû bersiva wê xweziyê?**

Ez karim vê bi dilxweşî bêjim ku AKP Tirkiye xistiye pêvajoyek guhertin û veguhertinê. Pêvajoyên demokratîk li seranserê cîhanê bi qolincan pêk tên ku Tirkiye jî di vê pêvajoyê re derbas dibe. Lê dîmena heyî dide xuyakirin ku wê ev qolinc pêşketinên girîng û dîrokî bi xwe re bîne. Yek ji mînakên herî dawîn a van qolincan guhertina makezagona darbeya 12'ê Îlonê ye. Ji ber vê, ez bawerim di sazkirina aramiya Tirkiye û herêmê de, di îstîqrar û jiyandina kulturê de bûye bersiv.



Abdurrahman Kurt

**Di pêvajoya demokrasiyê de astengên li pêşiya Tirkiyê çi ne?**

Astenga herî mezin ramana wesayetê ye. Helwesta ku ji damezrandina Komara Tirkiyê û heta niha nahêle îradeya azad a ku di sindoqan de dertê pêş, şewqa xwe bide desthilatdariyê. Ev raman ji alî dezgehên wesayetdar ên ku piştgiriyê didin makezagonên darbeyên leşkerî tên afirandin. Tirkiye bûye biyaniyê dîroka xwe, bûye biyaniyê kultura hemwelatiyên xwe, ji hişmendiya dewletbûnê daketiye hişmendiyek yek alî. Li şûna ku pirsgirêkên civaka xwe rawestîne, wan pirsgirêkan geştir dike û ev jî berhema hişmendiya dewleta kûr e. Gava em bi vî awayî lê temaşe bikin, em ê bibînin ku astenga herî mezin wesayet e.

**Şertê demokrasiyê pirsgirêka kurd e, heger di demokrasiyê de behsa pirsa kurd bê kirin...**

Belê, bawerim em hatin ser mijara bingehîn. Ji xwe dijberiya herî mezin a wesayetê pirsa kurd e. Ango xala bingehîn a demokrasiya Tirkiyê pirsa kurd e. Ji ber ku hişmendiya wesayetê cîh nade pirsa kurd, ev pirsa ku bi salan e xwîn jê tê berdewam dike. Ev mijar nehatiye axavtin, nehatiye raberizandin, rastiyên heyî nefûrandine ser rûyê erdê. Ji ber vê, hetanî îro zimanek hevbeş nehatiye bikaranîn. Girîngî û wate ev e ku hişmendiya wesayetê rabe û ev pirsgirêk bi awayekî eşkere û wêrekî di platforman de bê nîqaşkirin.

**"Berhemên dîrokî û edebî yên kurdî ji alî dewletê ve tên parastin"**

**Birêz Kurt, di nava AKP de hebûna 75 wekîlên kurd hêzek mezin e. Gelo di çareserkirina pirsa kurd de ev hêz xwediyê projeyekê ye?**

Ez karim bêjim ku me di çareseriya pirsa kurd de îmze avêtiye bin gelek pêşketinan. Lê bêyî ku em şowê bikin, bêyî ku em xwe derxin pêş, em bi dengê wîjdanê xwe xebata xwe dimeşînin. Wek mînak, di wê demê de li Amedê lambeyên kesk, sor û zer qedexe bûn, kesk dikirin şîn. Bifikirin, li herêmê tehamilî rengê kesk nedihat kirin. Lê îro zimanê kurdî serbest e, televizyon 24 seetan weşana kurdî dikin, di zanîngehan de beşên ziman û edebiyata kurdî vedibin, di şanogehên dewletê de şanoyên bi kurdî tên lîstin, berhemên dîrokî û edebî yên kurdî ji alî wezaretên dewletê ve tên parastin û xwedî lê tê derketin. Em ketine pêvajoyek bi vî rengî. Gava em li van kiryar û destketinan binerin, em ê bibînin ku 75 wekîlên kurd îmze avêtine bin kiryarên gelek baş û ne ku wek mixalefet dibêje, bêdeng û bê helwest in.

**Gelo di dema nîqaşkirina guhertina makezagonê de pêşniyazên BDP li ber çav nehatin girtin, yan jî di paşperdeyê de dîmenek cuda hebû?**

Ez dikarim eşkere bêjim ku BDP nehatiye piştguh kirin û neheqî lê nehatiye kirin. Ev xelet e û ji propagandayê pê ve ne ti tişt e. Wek kesekî ku di nav mijarê de me wan rexne dikim. Dibêjin di derbarê kurdan de ti tiştek tune ye. Gava em vê raberî wîjdanê mirovan bikin, girtina partiyan herî zêde kurdan eleqedar dike. Rewşa bingeha Dadgeha Makezagonê herî zêde kurdan eleqedar dike. Gava em bên ser rewşa TSYK û bûyerên Şemzînanê, ma jikarkişandina sawciyê Şemzînanê kurdan eleqedar nake...

Derbarê zarokên girtî de herî pêşîn min daxwaza efûyek giştî ji bo wan kir. Min got em wan efû bikin û darizandina yasayî ji pêşerojê re bihêlin. Lê BDP a me li çi aliqî? Xwe li xala wekheviya makezagonê aliqand û pê ve zeliqî. Ji ber vê minasebetê, gava em li mijarê dinerin, dibînin ku ev kiryarên wan tenê ji bo xilaskirina rewşê û propagandaya pêşerojê ye. Niha jî dibêjin ku BDP cidî nehatiye girtin. Ez bi xwe beşdarî hevdîtinan bûm û şahidê meselê me. Min dît bê AKP çiqasî xwest pirsgirêkên bi BDP re çareser bike. Kesên ji derveyî meselê dikarin bi propaganda BDP bawer bikin, dikarin bêjin BDP cidî û wek mixatab nehat girtin. Lê tiştekî bi vî rengî tune ye, wek yekî beşdarê hevdîtinan qet vê yekê, vê propagandaya ne rast qebûl nakim. BDP nikare cidî bibe.

**Abdurrahman Kurt:**
**"5 armancên Ergenekonê"**

- Hilweşandina AKP
- Wek stratejî têkbirina Kurdistana Îraqê
- Xirakirina têkiliyên navbera Amerîka û Tirkiyê
- Têkbirina pêvajoya endametiya Yekîtiya Ewrûpayê
- Bi alîkariya cemeatan ji hindur de hilweşandina sîstemê

**"Ji aliyê me ve helbet BDP di çareserkirina pirsa kurd de xwediyê ciyekî girîng e, em di zanîna vê yekê de ne ku gerek em û BDP bi hevre vê pirsgirêkê çareser bikin. Lê gava ew jî wek desthilatdaran "ya wê bi gotina min bibe, yan jî çareserî hîç çênabe" bêje, wî çaxî demokrasî jî çênabe"**

**"Bendava ji sedî 10 ne bi guhertina makezagonê ve girêdayî ye"**

**Baş e, çima bendava ji sedî 5 nehat qebûlkirin, gelo şika ku wê BDP zêdetir dengan bistîne bû sedem?**

Heger rastî bê gotin, bendava ku îro heye bendavek zêde ye. Li welatên din ji sedî 5 yan ji sedî 7 e. Lê Tirkiye niha tekoşînek demokrasiyê dide. Ev bendav berî hatina me çêbûye. Di dema xwe de ji bo ku partiya Refah'ê bi ser nekeve ev bendav ji alî artêşê ve hat danîn. Di pêvajoya niha de em li beramberî doza Ergenekon û tekoşîna demokrasiyê ne. Binerin, heman gotinê parêzerê herî mezin ê Ergenekonê Tansel Çolaşan jî dibêje. Tansel Çolaşan jî dibêje bendava ji sedî 10 daxin. Armanca vê çi ye? Bi vê daxwazê dixwazin welêt ber bi hikûmetek koalîsyonê ve bibin. Hikûmeta koalîsyon çi ye? Tê wateya ku şirîkê wê koalîsyonê CHP ye. Dixwazin peyama "şansê we yê berdewamkirina doza Ergenekonê nîne, şansê we yê berdewamkirina rêdana demokratîk nîne" bidin. Ji ber vê, di vir de dek û dolab hene. Ji aliyê din bendava ji sedî 10 ne bi guhertina makezagonê ve girêdayî ye. Ev mesela derxistina qanûnek siyasî ye, bi derxistina qanûnek siyasî çareser dibe.

**Ger henû wekîlên kurd (yên di nava her partiyê de) bên cem hev, wê nikaribin çareseriyek bevbeş ji pirsa kurd re bibînin?**

Ez ji dil û can tevlî we dibim û bi pêwistiya vê bawer im. Lê binerin, ez mînakek pir biçûk bidim we. Li her derê Tirkiyê çêdibe, lê li Amedê em bi navê "Meclîsa Biçûk a Tirkiyê" civînan li dar dixin. Rêxistinên civakî yên sivîl van civînan saz dikin. Bang li herkesî dikin, me jî dawet dikin, komeleyên îslamî jî dawet dikin, komeleyên birayên me yên Elewî jî tên, rewşenbîr û komeleyên çep jî beşdar dibin. Lê BDP biryar da ku beşdarî van civînan nebe. Çima? Ji bo ku wan organîze nekiriye, çima ku xwedêgiravî kesek wan mixatab nagre, beşdarî civînan nabin.

Bi gotinek dawîn, nayên ciyên ku "gotina dawî" ne ya wan be. Gava ez li van helwestên wan dinerim, li ciyên ku xwe lê xurt dihesibînin rê nadin ti kesî. Baş e, hûnê çi hêviyê ji van mirovên ku rê li ber avêtina gavên demokratîk digrin, bikin? Ev tev mijarên nîqaşê ne. Ji aliyê me ve helbet BDP di çareserkirina pirsa kurd de xwediyê ciyekî girîng e, em di zanîna vê yekê de ne ku gerek em û BDP bi hevre vê pirsgirêkê çareser bikin. Lê gava ew jî wek desthilatdaran "ya wê bi gotina min bibe, yan jî çareserî hîç çênabe" bêje, wî çaxî demokrasî jî çênabe. Divê ev rastî ji alî herkesî ve bê zanîn, pirsa kurd ne di bin desthilatdariya kesekî de ye. Wê ev pirs bi îrade û ramanek hevbeş, bi platformên dewlemend, bi pêşniyazên rewşenbîr, siyasetmedar û pêşewayên civakê ber bi pêş ve here, aramî û pêşketina civakê bi xwe re bîne.

**Gelo peyamek we heye?**

Di dawiyê de dixwazim bêjim ku xeta siyaseta BDP di rêyek xelet de didome. Fikara "AKP nikare zora Ergenekonê bibe, em ê dîsa bi wan re li hev bikin" xelet e.

Niha hûn dinerin ku ev çalakî li ciyekî digihijin hev. Çalakî û helwestên jandar in. A yekem, ti wateya "AKP nikare zora Ergenekonê bibe, em ê bi wan re li hev bikin" û hevkariya bi celadên me re tune ye. Kes nikare ji bin vî barî rabe. Di vê derbarê de ez dixwazim ku BDP siyaseta xwe di ber çav re derbas bike.

A duyem, gotina "AKP kesên dîndar û mihafazakar di nava xwe de dihewîne" xelet e. Ez bawerim ger CHP heman tişt bikiraya wê pir bi rehetî piştgirî bidana CHP'ê. Lê ku AKP dixwaze guhertin û veguhertinan bike, dijminatiyê dikin. Gerek BDP helwesta xwe di ber çav re derbas bike, ev helwest xizmeta selametî û berjewendiya kurdan nake. Divê rojek berî rojekê ev hevalên me bi aqlê selîm bifikirin.

**Hevpeyvîn: Medya Denîz**

Berpirsê siyaseta aboriya derve ya hikûmeta Almanyayê Dr. Brauner:

# Li Îraqê gendelî kêşeyek pir mezin e

**Berlîn (Rûdaw) -** Li ser dîwarê nivîsgeha Dr. Brauner tabloyek mezin daliqandî ye, tê de wêneyê modela Alman a bi navûdeng Claudia Schiffer xuya dike bê çawa ew ala welatê xwe li dora laşê xwe yê tazî dipêçe. Li jora wê "Follow your instincts. Invest in Germany" hatiye nivîsandin. Ev beşek ji reklamên mezin bûn ku Almanya di sala buhurî de xwest di rêya wan re bala şirketên biyanî bikişîne ser bazara Almanî. Vê demê Dr. Karl-Ernst Brauner bêtir serê xwe bi warekî din re diêşîne, ew jî ne bazara li Almanyayê, lê belê bazara şirketên Almanî ya li Îraqê ye. Ji bo vekirina nivîsgehek taybetî ji bo aboriya Almanyayê, Dr. Karl-Ernst Brauner wê di meha Gulanê de serdana Hewlêrê bike. Bi vê helkeftê wî deriyên wezaretê ji Rûdawê re vekirin.



(Wêne: Rûdaw)

Dr. Karl-Ernst Brauner

"Peywendiyên şexsî di navbera Almanya û Kurdistanê de hene. Em li ser kar dikin ku di demek nêzîk de madeyên xam ji wir bînin Almanyayê. Hikûmeta Kurdistanê tekûz e. Ez li wir derfetên pêşketinên bilez dibînim."

**Rûdaw: Birêz Dr. Brauner, peywendinên aborî yên di navbera Almanya û Îraqê de niha di çi astê de ne?**
Dr. Karl-Ernst Brauner: Berî şerê Îraqê bazara Almanya li Îraqê digiha dora çar milyar Euro. Di sala dawî de tenê pênc milyon Euro bûn. Bazara di navbera me û Îraqê de xurtir dibe, lê dîsa jî pir kêm e.

**Şirtekên Almanî li Îraqê bêtir di kîjan waran de çalak in?**
Ji Îraqê re gelek divê, da ku dîsa vegere ser lingên xwe. Em dizanin ku mixabin ava paqij ji sedî 70 nagihê gelê Îraqê. Elektrîk hîn kêm e, divê kolan û pir bên avakirin, ji nexweşxaneyan re gelek tişt pêwîst in û herweha pêwîst e alavên şirketan dîsa bên bikaranîn da ku mirov bikaribe li Îraqê kar û dewlemendiyê bide peydakirin. Divê bendav dîsa bên xebitandin. Lê bi taybetî di warekî de em dikarin çalak bin: Em dikarin berheman bişînin Îraqê û em dikarin zanyariya teknîkî (technical now-how) jî bibin wir. Em dikarin Îraqiyan di warê kar de perwerde bikin. Em xwe wek hevalbend pêşkêş dikin ku dikarin pêwîstiyên Îraqê bi cî bînin.

## Metirsiya tevna Geldeliyê

**Hûn li Îraqê rastî kîjan astengan tên?**
Kêşeya sereke ewlekariya kêm e. Dema ez cara pêşî di Cotmeh a sala buhurî de çûm Bexdayê, pêwîst bû em gelekî ha ji meseleya revandina kesan hebin. Gelek hêz pêwîst bû da ku tiştek nebe. Burokratiya li Îraqê kêşeyek din e. Em li Almanyayê tim di hewildanan de ne ku burokratiyê kêm bikin. Li Îraqê pir zehmet e ku mirov rêyên rast peyda bike. Dema mirov peywendiyên ku alîkariya mirov bikin datîne, divê mirov ha ji xwe hebe ku nekeve tevna gendeliyê.

**Hûn çawa bi vê kêşeya gendeliyê re didin û distînin?**
Bi rastî ev kêşeyek mezin e. Li Almanyayê hin şîrket hene ku eşkere bû destê wan di gendeliyê de hebû. Ew şîrket niha di bin çavdêriyek taybetî de ne. Van şîrketan rêyên nû ji bo tunekirina gendeliyê pêk anîne. Mesrefa ku wan ji bo gendeliyê xerc dikir, nema bi wan re diwefe. Qet ne gengaz e ku mirov di vê rêyê re bazarê ji bo xwe qezenc bike. Eger bazara gendeliyê berdewam bike, hingî em ê bêjin: Bibûrin, em xwe vedikişînin.

**Te di Cotmeh a buhurî de serdana Hewlêrê kiribû. Te wir çawa dît?**
Em ji Bexdayê bi balafirek nûjen a paqij firiyan Hewlêrê. Mirovin mêvanperwer li balafirgeha Hewlêrê li pêşiya me bûn. Tirimbêlên me di kolanên paqij re derbas bûn, ku li herdu aliyan şînayî hebû. Em çûn hotêlek pir delal. Û me karî bêyî ti qerebalixek zêde herin û bên. Helwestên endamên hikûmetê jî qet ne helwestên neteweperestyane bûn, bêtir ha ji hestên hikûmeta navendî û dewletên cîran hebûn. Bi rastî jî divê ez bêjim ku li Hewlêrê rewş berevajî rewşa li Bexdayê bû. Pir balkêş bû.

**Gelo di warê bazirganî de şansên Kurdistanê ji deverên din ên Îraqê bilindtir in?**
Teqez. Eger ne ji rewşa ewlekariya baş bûya, wê 55 şirketên Almanî bi piştevaniya hikûmeta federal a Almanyayê beşdarî Pêşangeha Hewlêrê ya Navneteweyî nebûbana. Ev yek hîn li Bexdayê ne gengaz e, çima rewşa ewlekarî li wir hîn baş nebûye. Peywendiyên şexsî di navbera Almanya û Kurdistanê de hene. Em li ser kar dikin ku di demek nêzîk de madeyên xam ji wir bînin Almanyayê. Hikûmeta Kurdistanê tekûz e. Ez li wir derfetên pêşketinên bilez dibînim.

## Hesasiyatên li Îraqê

**Tevî van pêşketinan berê Almanya tim li Bexdayê ye. Mirov hest dike ku Almanya eşkere û vekirî qîmetê nade Herêma Kurdistanê. Çima gelo?**
Divê hayê me ji hesasiyatên li Îraqê hebe. Em dixwazin ku Îraqek yekgirtî ya aştyane hebe. Em naxwazin hêviyê bidin ti kesî ku bide ser rêya xwe ya xweser. Em wek hikûmeta federal pêşî bi hikûmeta li Bexdayê re didin û distînin. Niha rewş li Hewlêrê çêtir e, ji ber vê yekê çalakiyên me li wir zêdetir in. Hêviya me ew e ku herêmên din ên Îraqê jî bi pêş kevin. Her kesê ku bixwaze bi me re bazarek paqij bike, em jê re dibêjin: Tu bi xêrê hatî.

**Niha hûn ji bo Kurdistanê amadekiriya kîjan projeyan dikin?**
Şirketa Almanî ya mezin Daimler AG wê li Hewlêrê "German Automotiv Academy" damezirîne. Armanca vê dezgehê ew e ku xelkê fêrî karên di warê karûbarên girêdayî bi tirimbêl û alavên ajotinê yên din de bike. Nivîsgeha me ya ku wê di Gulanê de li Hewlêrê vebe, wê hewil bide ku derfetan ji bo sazkirina şirketan pêşkêş bike. Mirov li wir herweha dikare fêrî hin karên di warên avakirinê, elektrîka malan, birêvebirina şirketan û yên din bibe.

**Hevpeyvîn: Sîrwan H. Berko**

# Serweta wî 7.7 milyon Dolar in

Obama di eşkerekirina serweta binemala xwe de nirxê segê binemalê jî nivîsand

Li gor formên eşkerekirina serwetê, samana Serokê Amerîka Barrack Obama di sala 2009"an de gihiştiye 7.7 milyon Dolaran, ku beşê herî zêde yê vê serwetê ji dahata du pirtûkên wî yên di derbarê jiyana wî de, pêk tê. Di forman de, nirxê kûçikê Portekîzî yê binemala Obama ku navê wî Bo ye û diyariya senatorê koçkirî Edward Canady ji bo Obama, jina wî û herdû keçên wî bû, bi 1600 Dolaran hatiye hesibandin û Obama di forman de ew jî bi pereyan nirxandiye.

Hinek hisabên paşkeftî yên xanenişîniya Obama û Michele li gel sanodqek hilberînê ya şîrketa Vanguard û hisabek li C.B. Morgan Cheese û Northern Trust hene, herwiha hisabekî paşkeftî ji bo xwedina zanîngehê ya herdu keçên wan: Malia (11) û Sasha (8). Ev jimar nirxê xaniyê wan ê li Chicago ye.

Beşê herî zêde yê serweta Obama ji mafê çapkirina du kitêbên wî tê, ku jimara herî zêde ji wan hatin firotin û nemaze ya li ser jiyana wî "Xewnên Bavê Min" û "Dirêjiya Hêviyê" ku herdû jî berî ku Obama bibe serokê Amerîka hatine belavkirin.


Barrack Obama

